2

"دایکە پەری"

خەڵاتی زێڕین لە سەرۆکی فینلەندا وەردەگرێ



Zîlan Odabaşi ligel xweşikiya xwe serkeftî û zîrek e. Li pey hîmên xwe geriya û rastê Leyla Zanayê hat.... ▶8




# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 95 | 12 Gulan / Mai 2011


## Partiyên Rojavayê Kurdistanê li ser dixebitin

# Nexşerêya Opozisyonê tê amadekirin

6 »

■ Partiyên Tevgera Niştîmaniya Kurd li Sûriyê li ser nexşerêyekê kar dikin û ew ê vê projeyê di nêzîk de pêşkeşî opozisyona Sûriyê bikin.

### Wezîrê Çandiniyê yê Tirkiyê, Mehdî Eker:

Wezîrê Çandiniyê yê Tirkiyê Mehdî Eker ji Rûdawê re axivî û got "dema ku AKP bû desthilat, xeyal bûn armanc". ▶7

### Ebdulla Kurd li Çeçenistanê hat kuştin

Ebdulla Kurd ku destpêka Nîsanê bûbû Nûnerê Al-Qaîda li Bakurê Qefqasya ji aliyê hêzên Rûs ve hat kuştin. ▶11



4 191631 701506 00019


9 771869 104000 19

Great Britain

Malpera nû ya Rûdawê vebû

Rûdaw.eu

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

## *Wêneyê Hefteyê*

### Eger tu birayê dîktatorê welatê xwe bî, tê çi bikî?

Berî çend rojan parçeyek video di malpera "shamnewsnetwork" (snn) de belav bû ku dîmenek trajîk ji xwepêşandanên Sûriyê nîşan dide. Li ser kolaneke taxa Berzê li Şamê xwepêşander û hêzên polîsan nêzîkî 40-50 metreyî ji hev dûr in. Nêzîkî 40 alîgirên rêjîma Sûriyê li dora kesekî girîng in. Piraniya wan bi cilên sivîl in û hejmarek polis jî di nav wan de hene. Çend endamên polîsan vî kesê girîng ji keviran diparêzin, ku xwepêşander bi aliyên polîsan ve davêjin. Di heman demê de ev kesê girîng ku çakêtekî reş ê çerm li xwe kiriye, tivinga di destê xwe hildide ber çavê xwe, nîşanê ji xwepêşanderan digre û çend caran bi aliyê wan de diteqîne. Dîmenek ku seyranên mîrên îngilîz tînin bîra mirov, gava diçin nêçîra rovî û teyrikan. Lê ev der Sûriye ye û nêçîr ne teyrik in, lê mirovên bêçek in. Rojnameya Los Angeles Times (L.A.T.) dibêje ku ev kesê girîng li gor pisporên videoyan Mahir Al Esad e, birayê serokê Sûriyê Beşar Al Esad. L.A.T. li ser vê mijarê Şemiya çûyî wiha nivîsiye:

"Eger tu birayê dîktatorê bi hêz ê gelê xwe bî… Dibe ku tu biryar bidî ku karê rêjîma xwe ji nû binirxînî û hewl bidî reformên nû destpê bikî… Dibe ku tu warekî ji xwe re li bakurê Tehranê ava bikî...Yan, dibe ku tu tivingê bikî destê xwe û xwepêşanderan guleberan bikî, tenê ji bo tu bêhna xwe fireh bikî."



Nûnerê Al-Qaîda li Bakurê Qefqasya

# Ebdulla Kurd li Çeçenistanê hat kuştin

**Rûdaw –** Li gor nûçeyek ajansa nûçeyan a rûsî Itartass, li Çeçenistanê berpirsê Al-Qaîda yê bakurê Qefqasya, ku weke Ebdulla Kurd dihat nasîn, hatiye kuştin ku bi eslê xwe Kurd bûye. Itertass roja 4'ê Gulanê bi piştgirêdan bi ragihandineke Komîteya Neteweyî Ya Dijî Terorê, ev nûçe belav kir.

Ebdulla Kurd ê ku li Bakurê Kurdistanê ji Bongîlan (Solhan) a ser bi Çewlîgê jidayik bûye, nûnerê taybet û bawerpêkirî yê Rêxistina Al-Qaîde li bakurê Qefqasya bû. Li gor nûçeyê, di 3'yê vê mehê de, piştî şer û pevçûnekê ligel komek çekdar li deverên daristan û çiyayî yên gundê Bêdên li Komara Çeçenistanê, du kes ji çekdarên wê komê hatin kuştin û yek ji van kuştiyan jî Cevdet Doger bûye ku weke Ebdulla Kurd dihat naskirin. Ebdulla Kurd di sala 1977'ê de jidayik bûye û hevwelatiyê Tirkiyê bû.

Li gor daxuyaniya dezgeha dijî terorê ya rûsî, piştî kuştina Moiganêd di êrîşeke leşkerî ya hêzên taybet di 11'ê Nîsana îsal de, Ebdulla Kurd bû berpirsê serekî yê karûbarên tora navneteweyî ya Al-Qaîde li bakurê Qafqasyayê. Kontrol û belavkirina pere û alîkariyên darayî yên ku ji derveyî welat ji bo kiryarên nehênî û êrîşên taximên çekdar li seranserê bakurê Qafqasyayê digihiştin wan, li ser milê wî bû.



**Ebdulla Kurd bi navê xwe yê rastîn Cevdet Doger e**

Rûdaw

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Ne amade bûn teqe li xwepêşanderan bikin

# Artêşa Sûriyê 5 leşkerên Kurd kuştin



Dilyar Husên, Ehmed Fener, Heval Îbrahîm û Remezan Mihemed di artêşa Sûriyê de jiyana xwe ji dest dan

**Besam Mistefa**

Dilyar Husên (20) leşkerekî Kurd di nav artêşa Sûriyê de bû, piştî ku Deraa bû navenda serhildana xwepêşandanên Sûriyê ew bo bajarê Deraa hat veguhastin. Dilyar ne amade bû teqe li xwepêşanderan bike, loma roja 3'ê Nîsana îsal ji aliyê artêşa Sûriyê ve hat kuştin. Termê Dilyar bi rêûresmekê li gundê Karika yê girêdayî Efrînê li Rojavayê Kurdistanê hat veşartin.

Li gor îstatîkên opozîsyona Sûriyê heta niha 1500 xwepêşander ji aliyê hêzên Sûriyê ve hatine kuştin û 8 hezar kes jî hatine girtin. Li gor daxuyaniya çavkaniyên Kurd, di roja 15'ê Adarê îsal de ku xwepêşandanan li Sûriyê destpê kirin û heta niha 5 leşkerên Kurd ên di artêşa Sûriyê de ji aliyê artêşê bi xwe ve hatine kuştin, ji ber ku razî nebûne berê tivingên xwe bidin xwepêşanderan. Navê 4 leşkeran jî ev in: Dilyar Husên, Ehmed Fener, Heval Îbrahîm û Remezan Mihemed.

Her çiqasî hikûmeta Sûriyê radigihîne ku ev leşker "Ji aliyê grûbên çekdarî hatine kuştin", lê kesûkarên van qurbaniyan dibêjin ew ji ber teqenekirinê li xwepêşanderan hatine kuştin.

Hikûmeta Sûriyê ragehand ku leşkerê Kurd Ehmed Fener Misto (20) xwe kuştiye, lê li gor gotina hevalên wî gulleyek li pişta serê wî hatiye xistin. Bavê Ehmed razî nebû waliyê Hesekê tevî rêûresma veşartina termê kurê wî bibe û got: "Wan bi xwe kurê min kuştin, loma nahêlim kujerên kurê min werin şîn û veşartina wî."

Kesûkarên qurbaniyan bi daxuyaniya serokê partiyeke Kurd derbarê van qurbaniyan de nîgeran bûn. Rojnameya Şarqulewsat ji ser zarê Serokê PYD'ê Salih Muslim Mihemed belav kir ku: "Ev leşkerên Kurd û Ereb ên ku jiyana xwe ji dest dane bi destê grubên çekdar tên kuştin û birîndarkirin. Grubên çekdar di nav xwepêşanderan de hene, bi taybetî termê wan leşkerên Kurd ên ku gihiştine navçeyên Kurdnişîn bi destê grûbên çekdar di xwepêşandanên Deraa de hatine kuştin, ji ber xwepêşander û hêzên ewlekariyê teqe li hevdu dikin". Lê navbirî, dûre di daxuyaniyekê de, ragehand: "Daxuyaniyên min hatine têkdan. Min behsa grûbên çekdar di nav xwepêşandanên Sûriyê de nekiriye, min got ji ber qedexekirina medyaya serbixwe ji aliyê hikûmeta Sûriyê rewşeke ne zelal û bi guman heye." Herwiha, "Baweriyê bi çîrokên hikûmeta Sûriyê nakim derbarê hebûna grubên çekdar û terorîstî di nav xwepêşanderan de."

**Rayedarên Sûriyê îdia dikin ku ev leşkerên Kurd ji aliyê grûbên çekdarî ve hatine kuştin, lê malbat bawer nakin.**

Roja 3'ê Nîsanê termê serbazê Kurd Heval Eyûb di rêûresmeke mezin de li gundê Elwankê yê ser bi bajarokê Dêrikê hat binaxkirin. Sekreterê Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê Nasredîn Îbrahîm li wir gotarek pêşkêş kir û got: "Me dixwest şehîdên me li ser xaka Colana dagirkirî bihata şehîdkirin, lê mixabin ew di dem û cihê şaş de hatin kuştin. Ji ber artêş li cihekî şaş tê bikaranîn, erkê artêşê ne binpêkirina xwepêşanderan e, lê parastin gel û welat e." Dr. Ciwan Heqî ku nivîskarekî Kurd ji Rojavayê Kurdistanê ye û niha li derve dijî, gotarek nivîsiye û dibêje: "Bi çi Beşar Esad Apociyan ji Qendîlê tîne Kurdistana Binxetê?"

Ev gotara ku roja 4'ê Gulana îsal di malpera Nefelê de hatiye belavkirin, behsa rola bi guman a PYD û alîgirên PKK'ê dike di vê dema dawî de û dibêje: "Li gor agahiyên bawerpêkirî di van rojên dawî de rêjîma Baasî ya Beşar Esad ji Qendîlê Apociyan vediguhêze Rojavayê Kurdistanê." Heqî dibêje qaşo gerîlla bo serkutkirina xwepêşandanan çûne Sûriyê. Lê Abdulla Ocalan di hevdîtina xwe ya dawî de ligel parêzerên xwe daxwaz ji Kurdên Sûriyê kir ku yek bibin û Kurd bi giştî bibin pêşengên xwepêşandanên ku li welatên deverê tên kirin.

Herwiha PDY di daxuyaniyekê de daxwaz ji Kurdên Sûriyê dike bi gotinên gruba Îxwan Musilmîn neyên xapandin: "Rabuhuriya Îxwan li himber Kurdan xuya ye, loma pêwîst e gelê me ji gotinên wan bawer neke û pişta xwe bi vîn û şiyana xwe girê bide bo guherînê."

Bijîjkê Îbrahîm Tatlises Îlhan Elmaci bo Rûdawê:

# Tatlises felc nabe û wê bikare bi piyan bimeşe

**Hêmin Xoşnaw** Hewlêr

Ew bijîjkê ku li Tirkiyê neştergeriya (emeliyat) Îbrahîm Tatlises kir, diyar kir ku rewşa tendurustiya Tatlises ber bi başbûnê ve diçe û felç nabe, lê got: "Wê bandorek pir kêm a birîndarkirina wî li ser gewdeyê wî bimîne."

Îlhan Elmaci doktorê neştergeriya mejî ye û 25 sal in di wî karî de kar dike û niha jî serokê beşa Neştergeriya Mejî li Nexweşxaneya Acibadem e. Îlhan Elmacî heftiya borî serdana Herêma Kurdistanê kir û ji Rûdawê re behsa neştergeriya Tatlises kir: "Tendurustiya birêz Tatlises ber bi başbûnê ve diçe."

Şeva 13'ê Adarê Tatlises dema ji bernameya xwe ya heftane ya Îbo Show ku li Beyaz TV tê weşandin, vedigeriya bo mala xwe, rastî êrişek çekdarî hat. Tatlises di encamê de bi giranî birîndar bû û guleyek jî li serê wî ket. Dema Tatlises gihandin nexweşxaneyê, hêviya başbûnê pir kêm bû. Dr. Îlhan Elmacî serokatiya wê tîma bijîjkan a çareserî û çavdêriya Tatlises, dikir. Wê demê Elmacî diyar kir ku birîna Tatlises pir giran e û "eger nemire jî wê ji milê çepê felc bibe." Lê Elmacî niha dibêje ku Tatlises felc nabe û dikare bi piyan jî bimeşe.

## Tatlises carek din dikare vegere meydana hunerê.

Meha borî Tatlises ji bo tedawiyê birin Almanya. Bijîjkê Tirk di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de behsa rewşa tendurustiya Tatlises kir û got: "Tatlises rojên giran û zehmet derbas kir. Ez car caran ligel doktorên Alman çavdêriya rewşa tendurustiya wî dikim û ji wan dipirsim. Di van rojên dawî de bi awayekî zêde wê çareserî jê re bê kirin. Bê guman birîna wî giran bû, lê metirsî derbaz kir." Elmacî bi kêfxweşî ve dibêje: "Ez di wê baweriyê de me ku carek din dikare vegere meydana hunerê."

Despêkê Dr. Îlhan Elmacî li beramberî rewşa tendurustiya Tatlises pir reşbîn bû û di wê derbarê de dibêje: "Em ne li bendê bûn bi vî awayî û bi lez baş bibe. Wê demê rewş ber bi aliyekî din ve bûn. Piştre bi çareserî û îradeya wî, kar arasteyek din wergirt û ber bi başiyê ve çû."

Dema Tatlises rastî wê bûyerê hat, Dr. Elmacî diyar kir ku eger Tatlises baş jî bibe, wê ji aliyê çep felc bibe. Niha ew bijîjk derbarê felcbûna Tatlises de dibêje: "Dema em temaşeyî rûyê Tatlises dikin, ti xirabî û rûtirşiyekê nabînîn. Wê ji kemaxê parçeyek hestî li nav mejî, li cihê birîndarbûyî deynin, wê hemû tişt asayî bibe û arasteya xwezayî werbigire. Di dema bûyerê de li aliyê çep felcbûnek bihêz hebû, lê berî ji bo çareseriyê biçe Almanya, tevgera çokên wî hebû û xwe li ser piyan digirt. Wekî ji Almanya jî nûçe gihaye destê min, ber bi başiyê ve diçe, xwe komî ser hev dike û li ser piyên xwe dimeşe. Dibe ku hinek bandorên kêm ên vê bûyerê bimînin, lê ez ne di wê baweriyê de me ku bandorên wê li pêşiya karên wî astengiyan çêkin."


"Dibe ku hinek bandora birînê bimîne, wê li ber karê hunerî nabe asteng"

Heftiya borî Dr. Îlhan Elmacî hat Kurdistanê û semînerek ji bo bijîjkên Herêma Kurdistanê da. Dr. Îlhan Elmacî armanca serdana xwe ji Rûdawê re eşkere kir: "Armanca me ya serekî girêdana têkilî, nasandina hempîşeyên me yên ku li Îraq û Hewlêrê neştergeriya mejî dikin bû."

# Kurd bûn sedemê dîtin û kuştina Bîn Ladin

Wladimir Van Welgenburg

Girtina yek ji qasidên Rêxistina El-Qaîde bi navê Hesen Xul ji aliyê Hêza Dijî Terorê ve li Kurdistanê, bû sedema eşkerebûna cihê Serokê El-Qaîde Usama Bîn Ladin.

Di vê derbarê de Serokê Hêza Dijî Terorê (Hêzek girêdayî Wezareta Pêşmergeyan) Lahur Talabanî ragihand ku girtina Hesen Xul yek ji mezintirîn girtinên Hêza Dijî Terorê bû ku li Kelar hat girtin û nameyeke 17 rûpelî ya Usama Bin Ladin pê re bû. Lahur Talabanî ji Rûdawê re got ku Hesen Xul ji aliyê hêzên wan ve di sala 2004'ê de hatiye girtin. Wê demê nameyek 17 rûpelî ligel bû û wê ji Ebu Museb Zerqawî bo Usame Bîn Ladin biriban. Zerqawî di wê nameyê de ji bo derxistina şerê mezhebî yê navbera Şîe û Suniyan de daxwaza alîkariyê dike. Herwiha daxwaza "Cîhadek" zêdetir kiriye.

Li gor raportek a rojnameya Washington Post a Amerîkî, Zerqasî di wê nameyê de nivîsandiye, eger El-Qaîde plana wî li Îraqê bipejirêne, wê ew (Zerqawî) "Bi eşkere û li ber çavê çapemeniyê bi dilsoziya te (Bîn Ladin) sond bixwe." Lê di dokumentê de hatiye nivîsandin, eger Bîn Ladin piştgirî neda wan, Zerqawî nivîsandiye; "Wê demê ew fikir û dîtina cûda ti bandorê li hevaltiya me nake." Erkê Hesen Xul ew bû da bizane rewşa cîhadê li Îraqê çawa ye û gelo pêwîst dike El-Qaîde tevlî çalakiyên baskê Qaîde yê Îraqê ku Zerqawî berpirsê wê bû, bike. Ev jî wekî dîtina derfetek bi armanca nîşandana rolê pêşeng ê El-Qaîde li navçeyê ye. Xul despêka Çileya 2004'ê bi armanca axaftina derbarê piştgiriya El-Qaîde di çalakiyan de Zerqawî dîtibû.

### Hesen Gul 7 sal berê li Kurdistanê hat girtin

Hesen Gul di dema vegerê de, 23'ê Çileya 2004'ê li xala kontrolê ya bajarokê Kelar ji aliyê Hêzên Dijî Terorê ve tê girtin. Piştre Dezgeha Ewlekariyê ya Herêma Kurdistanê wêneyek Hesen Gul bo Dezgeha Sîxûriya Amerîka (CIA) rêdike û heta nasnameya wî bike. Wê demê Gul ji Îranê hatibû û Dezgehên Ewlekariyê yên Kurdistanê ji wê tevgerê agahdar bûn, bi wî awayî ji li Germiyan hatiye girtin. Lahur diyar kir ku zanyarî di destê wan de hebûn, wê Gul ji Îranê biçe Diyale. Wê demê Lahur di wê derbarê de ji rojnameya Soma (Bi îngilîzî li Silêmanî belav dibû) re dibêje: "Ev yek ji girtina wan a herî mezin bû, ji ber ku di wê nameyê de gelek tiştê hatibûn nivîsandin."

Ew name plana El-Qaîde ya domdirêj û veşartî ya li Îraqê ji CIA'ê re eşkere kir. Wê girtinê jî bihaneyek da serokê wê demê yê Amerîka George Bush ji bo şerê Amerîka li Îraqê yê sala 2004'ê. Bush di wê derbarê de dibêje: "Wî kesî pere û peyamên navbera başûrê Asya û Rojhilata Navîn jibo serkirdeyên El-Qaîde dibir û dianî . Ew beşek ji wê tora ku em li Îraqê ji nav bibin bû." Lê belê haya Serokê Hêza Dijî Terorê ji wê yekê nebû ku girtina Hesen Xul bûbe sedema eşkerebûn û jinavbirina Bîn Ladin. Di vê derbarê de Lahur Talabanî dibêje: "Ew tenê 3 saetan li Silêmaniyê ma û me giringiya wî nedizanî, ji ber ku tiştekî ligel wî tune bû. Amerîkiyan ew bir û em nizanin piştre çi zanyarî dane Amerîkiyan.'' Pispor û Lêkolînvanê Dijî Teror û Karûbarên Rêxistina El-Qaîde Liya Faral ji Rûdawê re got: "Têkiliyek wî ya nêz ligel Zerqawî hebû. Herwiha têkiliyên wî li gel tora ku ji El-Qaîde cûdatir çalakî dikirin hebû. Dibe ku Hesen Xul bi awayek rasterast Zerqawî û kesên di nava wê torê de nasîbe." Ew pispor diyar dike ku Xul di kuştina Usame Bîn Ladin de kesek girîng bû: "Lê gelek tişt hebûn û berî wî jî dihatin zanîn."

Hesen Xul yek ji kesên çalak ên Rêxistina El-Qaîde bû, ji Pakîstanê ye û çend agahî derbarê qasidekî (postevan) El-Qaîde de daye lêkolerên CİA'yê. Nasnavê wî qasidî Ebu Ehmed Kuwêtî bû û yekemcar Xul navê Kuwetî eşkere kir. Gul ji CİA re gotiye, ew qasid pir nêzî Fermandarê Çalakiyên El-Qaîde Ferec El-Lîbî bû. Piştre Ferec Lîbî tê girtin û zanyariyên zêdetir derbarê Bîn Ladin de eşkere dike. Ebu Ehmed Kuwêtî ji aliyê CİA'yê ve dihat çavdêrîkirin. Her bi rêya çavdêrîkirina wî ya ji bo wî xaniyê Bîn Landîn a li Ebut Abad, di nava 4 mehan de ji Amerîkiyan re derket holê ku kesek girîng di wî xanî de dijî û Ebu Ehmed diçe gel. Di dawiyê de jî Usame Bîn Ladin hat dîtin. Di dema ragihandina kuştina Bîn Ladin de, çavkaniyên Amerîkî diyar kirin ku heşt sal dibe bi rêya girtina qasîdekê Usama Bîn Ladin hewl didan çavdêriya El-Qaîde û Bîn Ladin bikin. Ebu Ehmed li Kuwêt jiyaye û li Pakîstan ji dayik bûye. Di dema êrîşa ser xaniyê Bin Ladin li bajarê Abut Abat, di mala Bîn Ladin de Kuwêtî hat kuştin. Li gor çavkaniyan, dema Amerîka êrîşî wan kiriye tenê çek bi Ebu Ehmed re hebû û berevanî kiriye.

### Hesen Gul di ditîna Bin Ladîn de lîstikvanê serekî bû

Ew zanyariyên ku ji aliyê Hesen Xul ve hatine eşkerekirin, zanyariyên girîng bûn bo gihiştina qasidê Usama Bîn Ladin ê taybet. Roja 2'ê Gulanê berpirsekî Amerîkî ku nexwest navê wî bê eşkere kirin, ji Ajansa Associated Press (AP) re got: "Hesen Xul di dîtin û kuştina Usame Bîn Ladin de lîstikvanê serekî bû. Bêyî girtina Xul, ne dihat texmînkirin ku Bîn Ladin bê girtin." Roja 5'ê Gulanê Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê yê Washingtonê Qubat Talabanî li ser Twitterê bi serbilindî nivîsandiye ku hêzên asayîşa Kurdistanê karîne "Lîstikvanek serekî" bigrin û hinek zanyarî eşkere kiriye û herwiha ji bo dîtin û kuştina Bîn Ladin bû arîkar .

Herwiha Qubat Talabanî diyar kiriye ku amade ne zanyariyên zêde bidin Navenda Siyasiya Tirkiyê (TPC) li Washington. Li gor raportan, Xul rasterast ligel Xalîd Şêx Mihemed kar kiriye ku yek ji plandanerên êrîşên 11'ê Îlonê bû. Ew niha di girtîgehê de ye. Li gor belgenameyên Wezareta Dada Amerîka, Hesen Xul yek ji 28 girtiyên ku qaşo li cihek veşartî li Polonya ji aliyê CIA ve bi armanca îtirafkirina zanyariyan hatine îşkencekirin e.

**Li gor Wezareta Dada Amerîkî Hesen Xul li Polonya li cihekî veşarti ji aliyê CIA ve bi armanca îtirafkirina zanyariyan hatiye îşkencekirin**



Ahmet Dere

## Alozî û Zehmetiyên Pêvajoyê



Pêvajoya hilbijartinên li Tirkiyê roj bi roj zêdetir bi aloz dibe. Asta zimanê serokên partiyan bûye ya dijminatiyê. Roj tune ku di navbera Erdogan û Kiliçdaroglu de gotinên bêrûmet neyên ziman, herwiha di navbera Erdogan û Bahçeli de jî. Van rojan di Serokê AKP'ê de nexweşiya psîkolojîk peyde bûye, wisa diyar e ku wê ev rewş heta 12'ê Hezîranê dewam bike.

Di vê pêvajoyê de alozî û zehmetiyên herî giran li dora pirsgirêka Kurd mezintir dibin. Di aliyekî de AKP, CHP û MHP derbarê pirsgirêka Kurd cûrbecûr leyîstokên qirêj lidardixin, di aliyê din de jî ev her sê partî li dijî gelê Kurd siyaseta înkar û qirkirinê dipejirînin. Operasyonên leşkerî ku li dijî gêrîlla pêk tên bi alîkariya siyaseta van sê partiyan dimeşin. Mirov dikare di nava hevokên serokên van her sê partiyan de jî alîkariya ji bo operasyonên leşkerî bibîne. Lewre, dema mijar dibe pelçiqandina vîna gelê Kurd, ti cudahiyek di navbera AKP, CHP û MHP'ê de nayê dîtin.

Ji ber rewşa bialoz û zehmetiyên ku derketine holê, hêjî namzetên serbixwe û BDP neketine nava xebatên aktîf yên hilbijartinan. Bêguman ev rewş, bi taybetî, li xweşiya AKP'ê diçe. Lewma heya ku ji destê Erdoğan tê, bi taybetî di derbarê pirsgirêka Kurd de, ew zimanê xwe tûndtir dike. Di heman çarçoveyê de, di mitînga li Muşê de wî diyar kir ku «Pirsgirêka Kurd tune, lê belê pirsgirêkên birayên min ên Kurd hene». Ev gotina Erdoğan rûyê nû yê siyaseta AKP'ê eşkere dike, lewre wisa dixûyê ku wê di salên pêş de AKP bi tevahî siyasetekê li ser esasê pelçiqandina vîna gelê Kurd bimeşîne.

Qasê ku dixûyê, di derbarê çareserkirina pirsgirêka Kurd de kes nikare ji AKP'ê hêviyan bike, herwiha ji CHP û MHP'ê jî. Di vê rewşê de, bêguman hemû bar dikeve ser milê gelê Kurd. Li gorî ku ez dibînim, pir zehmet e ku em ji namzetên serbixwe, yên ku wê bikevin Meclîsa Tirkiyê, hêviyên mezin bikin. Rewşa bêbiryar ku ev namzet vê gavê dijîn, di mêjiyê mirovan de pir pirsan çê dikin; gelo ew ê bikaribin nûnertiya gelê me bikin? Ez bawer im di mêjiyê bi mîlyonan Kurdan de ev pirs heye.

Ji hilbijartinan re mehek maye. Divê namzetên serbixwe, DTK û BDP siyaseta xwe pir baş zelal bikin û di wê çarçoveyê de bikevin nava kar. Her roja ku di derbarê pêvajoyê de alozî û nakokî hebin wê li dijî wan bê bikaranîn.

Pêwîst e bê zanîn ku daxwaza AKP, CHP, MHP û herwiha ya Dewleta Kûr ew e ku BDP nekeve meclîsê, an jî nikaribe komeke xurt çêbike. Ji bo ku Meclîsa Tirkiyê nikaribe bi hêsanî daxwazên AKP'ê û yên Dewleta Kûr pêk bîne, divê BDP bi komekê xurt bikeve Parlamena Tirkiyê (TBMM).

## "Ê ku di bin metirsiyê de ne, em in!"

*Rûdaw - Hevseroka BDP'ê ya berê û namzeta serbixwe ya Amedê Aysel Tugluk hefta borî bi daxuyaniyeke xwe kete rojevê. Tugluk gotibû "Pêvajo wiha bimeşe wê gelek tiştên nexweş rû bidin" û medyaya Tirk jî li ser van gotinên wê gengeşiyeke mezin derxist û ligel daxuyaniyên hinek siyasetmedarên Tirk, îdia kirin ku Tugluk bi gotinên xwe Tirkiyê tehdît dike. Aysel Tugluk ji Rûdawê re ragihand ku wê wek siyasetvanekî rewş nirxandiye û got "eger xeter û metirsiyeke hebe, em di bin metirsiyê de ne."*

*Aysel Tugluk di axaftina xwe de bibîr xist ku gotinên wê di çapemeniyê de pir hatine guftûgokirin û rexne li nêzîkbûna medyaya Tirk girt û got, "Meyaya Tirk weke her carê dîsa sedem û bingeha meseleyê nedît û rojeveke talî çêkir ku pê provokasyon derxe. Ew ji mêj ve rojeva rastîn vedişêrin û rojeveke talî derdixin û bala raya giştî wisa belav dikin." Tugluk got ew siyasetmedar e û ligel hemû zehmetiyan karê wê jî vegotina rastiyan e: "Ne di kultura siyaseta me de ye, em ti caran bi gotinan ti kesî tehdît nakin. Ez ê bi çiyê xwe tehdît bikim? Ez tiştên ku dibînim û çaverê dikim, dibêjim. Tiştên ku rû didin çi ne, wê çawa bibin, ez li ser wan diaxivim û nêrînên xwe dibêjim. Ev jî ne tehdît e. Lê eger xeter û metirsiyeke hebe, em di bin metirsiyê de ne."*

*Aysel Tugluk bûyerên ku Kurdan di bin metirsiyê de nîşan bidin wiha rêz kir: "Kesên ku di bin navê Doza KCK'ê de bê huqûq tên darizandin hevalên me ne, dema ku mafê xwe yê demokratîk xwestine û lêdanê dixwin ciwanên me ne, ên ku ji gundên xwe hatine sirgûnkirin gundiyên me ne, ez van bûyeran ji wijdana raya giştî re dihêlim. Kî kê tehdît dike? Kî li kê neheqî dike? Kî kê dixe bin metirsiyê?"*



*Namzeta serbixwe û parêzera Serokê PKK'ê Abdullah Ocalan, Aysel Tugluk di axaftina xwe de destnîşan kir ku Ocalan jî di hevdîtina dawî de wek wê daxuyanî dane: "Demek berê hêviyên wî gelek zêde bûn, lê di hevdîtina dawiyê de ez bawer dikim ew jî êdî rewşê xeter dibîne û dibêje ku sozên hatine dayîn nayên bicîhkirin. Kurd zêde tişt naxwazin, lê ji bo muzakereyan ti jestek biçûk jî nîşan nedan. Em ti gavekî ku hêviya me ya aştiyê zêde bike, nabînin."*

*Di dawiya axaftina xwe de Tugluk diyar kir ku înkar dibe sedemê serîrakirinê û got, "ji bo biratiya gelan firseteke pir mezin ji dest diçe. Divê em rê nedin vê yekê. Operasyonên ku tên kirin, binçavkirin, êrişa li ser gel, hemû tişt dibin sedem ku gel serî rake."*

CHP û BDP derbarê pirsa Kurd de AKP'ê tengav dikin

# Namzetê CHP'ê: Em ê ji bo çareserkirina pirsa Kurd şer ragihînin

**Hêmin Xoşnaw**

Piştî Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyîp Erdogan di çend salên borî de çend caran çira ji bo çareserkirina pirsa Kurd vêxist û vemirand, pê diçe carek din piştî hilbijartinê pirsa çareserkirina pirsgirêka Kurd baskê xwe bi ser parlementoya Tirkiyê de bigre. Lê vê carê di wê meseleyê de wê rolê BDP û CHP'ê jî hebe.

Li gor nêrîna çavdêrên siyasî di gera bê ya parlementoya Tirkiyê de, siyasetmedarên wekî Kemal Kiliçdaraglu, Gursel Tekîn, Sezgîn Tanrikulu, li gel parlementerên serbixwe yên wekî; Hatîp Dîcle, Leyla Zana û Şerafettîn Elçî wê bi proje û pêşniyarên xwe çareseriya pirsa Kurd bisepênin.

Li gel nêzîkbûna hilbijartinê, şermezarkirina hev a li ser çareserkirina pirsa Kurd di nava partiyan de zêdetir dibe, bi taybet jî di pêngavên hilbijartinê yên li navçeyên bakûrê Kurdistanê.

### Partî hevdu şermezar dikin

Partiya nijadperest a Tirkiyê MHP li ser dijberiya li dijî Kurdan berdewam e û bi baweriya wê: "Proseya vebûna beramberî Kurdan Tirkiyê ber bi parçebûnê ve dibe." Herwiha BDP û CHP dibêjin, pêngavên bingehîn ji bo çareserkirina vê pirsê nehatine avêtin û ya ji aliyê AKP'ê ve hatî kirin, tenê propaganda bû. AKP jî li ser wê yekê berdewam e ew pêngavên piştî 2008'ê avêtin, heta radeyek zêde ev pirsgirêk ber bi çareseriyê ve biriye.

Lê ya pirsgirêkê dixe qûnaxa çareserkirinê, piştî hilbijartinê danîna makezagonek nû ye.

Bi baweriya Serokê Rêxistina Ozgur-Der a li Amedê Serdar Bulend Yilmaz, meseleya danîna makezagonek nû di gera bê ya parlementoya Tirkiyê hatiye yekalîkirin. Lê helwesta AKP'ê ya derbarê zimanê kurdî de "Metirsîdar" dibîne û dibêje: "Eger hikûmet wê soza xwe bibe serî, wê demê pirsa Kurd heta astekê wê ber bi pêşve biçe. Lê bikaranîna zimanê kurdî li cihên giştî napejirîne, ew jî daxwaza hemû Kurdan e û dibêje, ev daxwaz di makeagona nû de cihê xwe nagire. Çareserkirina vê pirsgirêkê jî, pirsgirêka bê çekkirina PKK'ê çareser nake."

Bi nêrîna hinek kesên ku rexne li gotinên vê dawiyê yên Erdogan digirin, wî hemû hewldan derbarê pirsa Kurd de rawestandiye. Lê hinek çavdêr jî vê wekî taktîkek demkî ya hilbijartinê ji bo bidestxistina dengê netewperstên Tirk û pêşigirtina MHP'ê ya gihiştina partlementoyê dibînin. Ev jî destê wî ji bo danîna makezagonek li gor daxwaza wî vekirî dihêle. Li aliyê din Erdogan pir kêfxweş e, dibîne ku CHP dibe xwedî însiyatîf û bi taybet jî di vê qûnaxê de anîna pêş a çareserkirina pirsa Kurd.

Ensar Ogut namzetê rêza duyemînê CHP'ê yê parêzgeha Ardahanê ye û dibêje, piştî hilbijartinê wê armanca partiya wan a serekî çareserkirina pirsa Kurd û anîna aştiya civakî ya li Tirkiyê be. Di vê derbarê de ji Rûdawê re got: "Ji bo CHP'ê çareserkirina pirsa Kurd meseleyek stratejîk e. Piştî hilbijartinê û bi taybet jî li parlamentoyê em ê ji bo çareserkirina pirsa Kurd şer ragihînîn."

**Li gor Ensar Ogut piştî hilbijartinan wê armanca serekî ya CHP'ê çareserkirina pirsgirêka Kurd be**

Lê bi baweriya Serokê Ozgur-Derê, tirsa ji reaksyona netewperestan tenê taktîkek e û Erdogan têne rojevê; "Di referanduma 12'ê Îlonê ya derbarê hemwarkirina 22 maddeyên makezagonê de, me dît ku beşek zêde ya netewperestên Tirk dengê 'ERÊ' dan. Ango dema wê tabloya behs dikin nemaye, lê xwe dizîna Erdogan ya ji çareserkirina pirsa Kurd girêdayî xwe nêzîk kirina Erdogan ya li siyaseta fermî ya dewletê ye."

Piştî 12'ê Hezîranê eger Erdogan bixwaze yan na, wê akterên din ji bo çareserkirina pirsa Kurd zextan lê bikin. Li jora hemûyan jî namzetên Kurd ên serbixwe yên BDP'ê, tê texmînkirin ku vê carê hêjmara kursiyên xwe ji 20 parlementeran bo 35'an zêde bikin. Ji bilî vê yekê vê carê namzetên Kurd ên serbixwe pir jêhatî û jîr in.

Bi baweriya namzetê BDP'ê yê Amedê Altan Tan, li Tirkiyê li cihê gotinan, pêwîstî bi pratîkê heye: "Dema wê yekê derbas bûye kesek bikare pirsgirêka Kurd ji bo armancên xwe bikarbîne. Qerta me hemûyan eşkere bûye, ji niha û pêde ti kes nikare niyetên xwe veşêre."

### Netewperestiya CHP'ê qels dibe

Ji bilî vê yekê heta radeyek berçav helwesta CHP'ê ya li beramberî pirsa Kurd hatiye guhertin. Bi taybet jî serokê wê partiyê Kemal Kiliçdaroglu ku Kurdek Elewî yê ji Dêrsimê ye û heta niha pir kêm behsa nasnameya neteweyan dikir, lê niha behsa guhertina siyaseta partiya xwe ya li beramberî pirsa Kurd dike. Civîna CHP'ê ya li Wanê yek ji mînakên vê rastiyê ye. Ji bilî Kiliçdaroglu, Gursel Tekîn wekî destê rast ê serokê vê partiyê tê hêjmartin, yek ji wan kesan e siyaseta partiya xwe ya înkarker li beramberî Kurdan dawî lê bîne û bibe akterê çareseriyê.

Sezgîn Tanrikulu cigirê serokê wê partiyê ye, Berpirsê Dosyeya Mafê Mirovan e û Kurd e, roj bi roj di nava wê partiyê de bandora wî zêdetir dibe. Lewra bi derketina wan rewşenbîrên Kurd ên di nava CHP'ê de pê diçe ku cûrê netewperestên di nava wê partiyê de ber bi avabûnê ve biçe. Bi baweriya Ensar Ogut, partiya wan li Tirkiyê cara yekemîn behsa çareserkirina pirsa Kurd kiriye. Îro jî bi heman awayî wê bibin akterê serekî yê çareserkirina pirsa Kurd: "Yê pirsa Kurd çareser dike, ne Erdogan e, wê Kemal Kiliçdaroglu be."

Bi baweriya Serdar Bulend Yilmaz, CHP wê piştî hilbijartinê derbarê çareserkirina pirsa Kurd de AKP'ê tengav bike: "Eger guhertinên di nava CHP'ê de rast bin, piştî hilbijartinê wê ew partî bibe kilîla çareserkirina pirsa Kurd."



# Partiyên Kurd nexşerêya Opozisyona Sûriyê amade dikin

Rejîma Sûriyê hewl dide ku opozisyonê dabeş bike û hinek sozan dide Kurdan. Lê bi berfirehbûna pêlên serhildanê li Sûriyê û serkutkirina wan ji aliyê hêzên Sûriyê, aliyê Kurdî jî xwe ji rojên nû re amade dike. Tê çaverêkirin ku di van rojan de partiyên Kurdî nexşerêyekê ji bo opozisyona Sûriyê pêşkeş bikin.

**Hîm Mele Ehmed**

Rojnameya The Times ya Brîtanî heftiya çûyî li ser rûdanên Sûriyê nêrîneke balkêş belav kir. Li gor The Times hin berpirsên rojavayî bawer dikin ku yek ji kêşeyên serekî yên biryardar di rûdanên Sûriyê de ew e ku Kurd li bakurê rojhilat tevlî serhildanê bibin. Ango baweriyek heye ku Kurd hîn bi rastî nebûne beşek ji rûdanên Sûriyê. Ji aliyekî din ve mezintirîn perên Şoreşa Sûriyê di facebookê de, ku niha zêdeyî 170 hezar endamên wê hene, heftiya çûyî daxwaz ji xortên Kurd kir ku guh nedin partiyan û bi xurtî tevlî serhildanê bibin. Ji bo şîrovekirina vê pirsê û hin pirsên din, Rûdawê têkilî bi berdevkê Partiya Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê, parêzer Zerdeşt Muhamad re danî. Zerdeşt Muhamad wiha got: "Em wekî Partiya Yekîtî xwe beşek ji hêzên niştîmanî yên Sûriyê dibînin. Gelê Kurd parçeyek e ji tevayê, ev parçe nikare rêya tevayê nîşan bide. Lê ji destpêkê ve partiya me tevlî xwepêşandanan bûye û bi xurtî piştgiriya wan kiriye. Ew xwepêşandanên girseyî li hemû Sûriyê çênebûne, ji bilî li Deraa yê. Hejmara xwepêşanderên Kurd jî gelkî baş e. Di îna 29'ê Nîsanê de nêzîkî 20.000 kes li Qamişlo tevlî xwepêşandanê bûn. Ji aliyekî din ve jî, tecrûbeya me ya 2004'ê dihêle ku em hay ji xwe hebin, em naxwazin ti alî xwepêşandanên me bike çarçoveyeke din, dûr ji armancên niştîmanî yên Sûriyê."

Zerdeşt Muhamad giringî da pirsgirêka beşdariya aliyên din ên civaka herêmên Kurd, nemaze hêzên Ereb û yên Xiristiyanî û got ku ji bo vê yekê hin astengî derketin, gava partiyekê dûr ji lihevkirinê al û wêneyên xwe hildan. Ev kiryar hişt ku hin hevkarên wan dûr bikevin.

### Hêzên Kurd ji bo Kongreya Niştîmanî ya Sûriyê reşbeleka nexşerê amade dikin

Zerdeşt Muhamed ragihand ku Partiyên Tevgera Niştîmanya Kurd li Sûriyê (12 partî) niha li ser reşbeleka projeyekê kar dikin û ew ê vê projeyê di nêzîk de pêşkeşî hêzên niştîmanî û demokrat ên Sûriyê bikin. Li gor axaftina wî, diyar bû ku proje nexşerêyeke ji bo çareserkirina pirsgirêka ku niha li Sûriyê peyda bûye. Bêyî ku bixwaze agahiyên firehtir li ser reşbeleka projeyê bide, wî got "Em di nêzîk de bernameyekê pêşkêş dikin, wek nexşerêyek. Niha em wek hêzên Kurd ên Partiyên Tevgera Niştîmaniya Kurd li Sûriyê li hev dirûnin û reşbeleka Projeyekê amade dikin. Em dixwazin bi hêzên nîştîmanî yên li welêt re kar bikin, wek çarçoveyek hevbeş. Mîna di Ragehandina Şamê de." Zerdeşt Muhamed diyar kir ku armanca wan lidarxistina kongreyekî niştîmanî ye ji bo tevaya Sûriyê û got "rejîm dixwaze hêzên opozisyonê mîna îslamîst, olperest û paşverû bide xuyakirin."

Muhamed diyar kir ku nexşerêya tevgerê wê di rêya danasîna hêzên opozisyonê de gavek be û wiha dom kir: "Em dixwazin opozisyon bibe xwediyê projeyek xuyakirî, kesên ji hundur û ji derveyî welêt jî bibin beşdar, komîteyên birêvebirina xebatê bên damezrandin. Ji bo li ser bingehê wan tevgera ser kolanan bê birêve birin. Armanc welatekî demokrat be, hikûmetek li gor hilbijartinên azad bê çêkirin. Ti alî neyê dûrkirin ji jiyana siyasî. Madeya 8 a Destûrê bê rakirin, ya ku Partiya Baas dike rêbera civat û dewletê."


Xwepêşandana li dijî Esad li Qamişlo

Ji destpêka rûdanên Sûriyê, berî 8 heftiyan, rêjîmê qet guh neda daxwazên aliyên opozisyonê û yên kesên serbixwe, di heman demê de çareseriya leşkerî wekî çareya tena hilbijart. Serokkomarê Sûriyê dawiya meha Adarê li ber Perlamena Sûriyê gotibû, "Eger ew cengê dixwazin, em jê re amade ne".

Li gor van zanyariyan Zerdeşt Muhamed derbarê pirsa 'gelo ew ji nexşerêyeke wisa çi hêviyê dikin?' got ku wan ti hêvî li ser vê rêjîmê nedanîne û wiha pêdeçû: "Ev rêjîma ku bi tenê ji sala 1963'yê ve desthilatdarî xistiye destê xwe û ti aliyê din nake hevpar. Ev rêjîm sedema hemû astengiyên Sûriyê ye, ku niha giha radeya xwepêşander bên gulebarankirin û kuştin. Rêjîmê ti reform pêşkêş nekir. Hemû biryarên hikûmetê tenê nivîsa ser kaxezê bûn. Tiştek nekirin ji gel re. Em dibînin çawa hemû dezgehên siyasî yên rêjîmê hatine dûrxistin û tenê artêş û leşker tevdigerin. Bi rengekî ji rengan darbeke leşkerî li Sûriyê pêkhatiye. Ev rêjîm nikare çareseriyan pêşkêş bike. Em ti hêvî ji vê rêjîmê nakin. Daxwaza me ew e ku hêzên niştîmanî, hêzên dêmokrat, yên Ereb û Kurd li hev rûnin û hêzên xortan jî di nav wan de."

Tê zanîn ku çalakiyên protestoyî li herêmên Kurdan ji destpêkirina serhildanan ve di destê komên ciwanan de ne. Di demeke pir kin de hejmarek mezin ji rêxistinên ciwanan hatin damezrandin û komên ciwanan hêzên xwe kom kirin, yekîtî û çarçoveyên hevkariyê ragihandin. Herwiha wan karî xwepêşandanên mezin li hemû bajarên mezin ên Kurdan li bakurê Sûriyê birêve bibin. Partiyên Kurd li Sûriyê ji destpêkê ve piştgiriya çalakiyên xortan dikin, lê piraniya wan bi rengekî fermî tevlî xwepêşandanan nabin. Herwiha partiyên ku tevlî dibin, dîsa rêberiya çalakiyan ji xortan re dihêlin.

Zerdeşt Mihemed derbarê idiaya ku tê gotin, 'ciwanên bê tecrûbe rêberiya gel bikin û partî li paş wan bin û tenê temaşe bikin' wiha axivî: "Me jî ev tişt dît, em gazinan ji tevgerê dikin. Helwesta partiyan ji çalakiyên ciwanan baş e, lê partî bi erkê xwe xweşik ranabin. Divê em li ser kolanê xwediyê kar bin. Karê xortan cihê serbilindiya me ye, lê divê partî di nav de bin û beşek bin jê. Divê her partiyek komên hevkariya xwepêşandanan damezrînin, divê partî alîkariya xortan bikin ji bo damezirandina komîteyên ragihandinê û komîteyên danûstandinan bi aliyên din re. Divê têkilî bi hêzên niştîmanî yên Sûriyê re bên danîn."

**Tecrûbeya me ya 2004'ê dihêle ku em hay ji xwe hebin, em naxwazin ti alî xwepêşandanên me bike çarçoveyeke din, dûr ji armancên niştîmanî yên Sûriyê.**

**Bi rengekî ji rengan li Sûriyê darbeke leşkerî pêkhatiye.**


Zerdeş Mihemed

**Em dixwazin opozisyon bibe xwediyê projeyek xuyakirî, kesên ji hundur û ji derveyî welêt jî bibin beşdar, komîteyên birêvebirina xebatê bên damezrandin. Tevgera ser kolanan bê birêve birin. Armanc welatekî demokrat be, hikûmetek li gor hilbijartinên azad bê çêkirin. Ti alî neyê dûrkirin ji jiyana siyasî. Madeya 8 a Destûrê bê rakirin, ya ku Partiya Baas dike rêbera civat û dewletê.**

# M. Eker: Dema ku AKP bû desthilat, xeyal bûn armanc


Wêne: Rûdaw

Wezîrê Çandiniyê û Parlamenterê Amedê yê AK Partiyê Mehdî Eker diyar kir ku pêşîlêvekirina li çareserkirina pirsa Kurd bi hemû hêza xwe didome û piştî hilbijartinê wê bi makeqanûneke demokratîk û sivîl re daxwazên demokratîk zêdetir bi cih bînin.

**Rûdaw: Li Kastamonuyê, li hemberî konvoya Serokwezîr Erdogan êrîşek pêk hat. Di êrîşê de polîsekî jiyana xwe ji dest da. Gelo dibe ku di dema hilbijartinê de êrîşên wiha zêde bibin?**

**Mehdî Eker:** Divê mirov vê êrîşê bi tundî şermezar bike. Li aliyekî ku Tirkiye diçe hilbijartinê û ji bo avakirina aştî û aramiyê hewl tê dayîn de, êrîşeke wiha pêk tê. Ev êrîş li hemberî îstîkrara Tirkiyê ye. Ev êrîş li hemberî hilbijartinê ye. Em hêvî dikin ku di dema hilbijartinê de êrîşên wiha zêde nebin.

**Di eynî demê de 4 cenazeyên mîlîtanên PKK'ê ku di operasyona artêşê de li Dêrsimê jiyana xwe ji dest dabûn, anîn Amedê. Dikandaran deriyê dikanên xwe venekirin. BDP'ê bal kişand ku PKK di dema bêçalakiyê de ye û divê operasyonên wiha pêk neyên. Hûn jî di heman fikrê de ne?**

Ew tiştekî nerast e. Di encamê de êrîş pêk tên. Ew êrîşa li Kastamonuyê jî mînaka vê yekê ye. Ew angaşt nerast in.

**Rexneyên "Pêşîlêvekirina çareserkirina pirsa Kurd" hate rawestandin, li partiya we tê kirin. Bi rastî jî AK Partiyê ev pêvajo sekinand?**

Pêvajo bi hemû hêza xwe didome. Ev pêvajo 9 sal berê dest pê kir. Bi avabûna AK Partiyê re dest pê kir. Dema ku AK Partî bû desthilat, xeyal bûn armanc, armanc jî veguherîn rastiyê. Tiştên ku ewçax weke xeyal dihatin dîtin, bûn rastî. Heşt sal berê li vî bajarî "rewşa awarte" hebû. Li ser mirovan zext û zordariyeke awarte hebû. Li ser kurdî, li ser nasnameya kurd, di qada demokrasiyê de, di qada sivîl de, di her qadî de zext hebûn. Dema mirov wê demê û niha dide ber hev, mirov dibîne ku di nava 8 sal û nîv de pêşveçûnên pir mezin çêbûne. Êdî di têketina Diyarbekirê de lewheyên kurdî hene. Navên gundan guherîn. Di sê zanîngehên dewletê de beşên Wêje û Zimanê Kurdî hene. Niha perwerdehiya lîsansa bilind tê dayîn. Qenala televîzyona dewletê 24 saetan bi kurdî weşan dike. Ne tenê di qenala dewletê de, di televîzyon û radyoyên taybet de jî weşana bi kurdî hate serbestkirin. Navê wêjevanên kurd li dibistanan kirin. Berhemên weke Mem û Zîn ên wêjevanên kurd ku heta duh qedexe bûn, veşartî bûn, ji aliyê Wezareta Çandê ve hatin çapkirin. Mirov nedikarîn di girtîgehan de bi dê û bavên xwe re bi kurdî biaxivin. Lê îro diaxivin. Her roj guhertineke din çêdibe. Bi sed milyonan Dolar pere dan welatiyên ku gundên wan hatine valakirin. Derbarê kuştinên kiryar nediyar de gelek lêpirsîn hatin destpêkirin. Gelek personelên sivîl û leşker niha girtî ne. Hesaba tiştên ku berê hatine kirin ji berpisyaran tê pirsîn.

**Pêvajo wê ji vir û şûnde bi çi awayî berdewam bike?**

Ji vir û şûnde, di çarçoveya qanûnan de, bi însyatîfa hikûmetê encax gav bêne avêtin. Êdî ji vir û şûnde pêvajoyeke wisa dest pê dike; Tirkiye wê bibe xwedî standardên bilind û makeqanûneke sivîl û demokratîk. Ji vir û şûnde wê hem bi destê welatiyên me yên kurd û hem jî bi destê welatiyên me yên din ên Tirkiyê makeqanûneke sivîl bê amadekirin.

**We behsa gavên ku di dema AK Partiyê de ji bo "Pirsgirêka kurd" hatin avêtin kir. Lê BDP û hin derdorên din ên kurd di wê baweriyê de ne ku ev gav têr nakin.**

Ew derdor berjewendiyên xwe weke ku berjewendiyên hemû Kurdan e dinirxînin. Hin berjewendiyên rêxistinê bi xwe hene. Ji bo parastina van berjewendiyan divê teror û tundî neyê rewakirin. Ew hemû Kurdan temsîl nakin. Berjewendiya wê rêxistinê heye. Beşeke girîng a Kurdan wan daxwazan nake. Ew tenê daxwazên wan e. Em ne mecbûr in hemû daxwazên wan li ber çavan bigrin û bi cih bînin. Em di nava yekparebûna Tirkiyê de, di nava aştî û aramiyê de, bêyî ku em serê hin kesan bişkênin, bêyî ku em serî li tundiyê bidin, em dixwazin daxwazên demokratîk bên axaftin û bi cih bên.

**Hûn PKK û BDP'ê weke hev dibînin?**

Nirxandina wê yekê ne karê min e. Jixwe herkes bi helwest, nêzikahiya xwe, dide zanîn ka çi ye. Ger welatî wan bişibînê hev, dikare bişibîne hev. Lê dema mirov lê dinêre, car caran dikare wan bişibîne hev.

**Serokwezîr li hemberî "çalakiyên Neguhdariya Sivîl (bêîteatiya sivîl)" nerazîbûneke tund nîşan da. Hûn jî weke Serokwezîr difikirin?**

Li kîjan aliyê cîhanê, di nava çalakiyên bêîteatiya sivîl de avêtina molotofan heye? Behsa konê bêîteatiya sivîl dikin, di nava wan konan de motolof derdikevin, bombe derdikevin. Ma di bêîteatiya sivîl de şikandina camên dikandarên ku weke te nafikirin heye? Di nav de avêtina molotofan a buroyên hilbijartinê yên partiyên ku weke te nafikirin heye? Kevir avêtin camên avahiya AK Partiyê, molotof avêtinê. Ku derê vê bêîteatiya sivîl e?

**Ger di vê hilbijartinê de Tirkiye careke din bi hêzeke mezin a hikûmeta AK Partiyê bê ser kar, soza me ev e: Em ê ji tiştên ku me heta îro kirine, zêdetir bikin. Em ê makeqanûneke demokratîk û sivîl amade bikin. Ev makeqanûn wê nûjen be, kin be, kakil be. Di nav de wê kîtekît tune bin. Em dixwazin makeqanûneke ku azadiyan esas digre, çêbikin.**

**Di pêşnûmeya makeqanûna sivîl a TUSÎAD'ê amade kir de, guhertina 3 xalên pêşîn jî hebûn. Dihate xwestin ku nasname ji nû ve bê ravekirin. Di pêşnûmeya ku AK Partî amade dike de, wê çi hebin?**

Em niha di nava wan nîqaşan de nîn in. Di encamê de hemû kes ji bo Tirkiyê pêşnûmeyan amade dike. Berê jî ev pêşnûme hatibûn amadekirin. Em dibêjin ev hilbijartin, hilbijartina hêviyan e. Hêviya Tirkiyê ye. Di nava hêviya Tirkiyê de Tirk jî Kurd jî hene. Nîjadên din ên li derveyî Kurd û Tirkan jî hene. Ger di vê hilbijartinê de Tirkiye careke din bi hêzeke mezin a hikûmeta AK Partiyê bê ser kar, soza me ev e: Em ê ji tiştên ku me heta îro kirine, zêdetir bikin. Em ê makeqanûneke demokratîk û sivîl amade bikin. Ev makeqanûn wê nûjen be, kin be, kakil be. Di nav de wê kîtekît tune bin. Em dixwazin makeqanûneke ku azadiyan esas digre, çêbikin.

**Serokwezîr jî raveya "Welatîbûna Komara Tirkiyê" anîbû zimên. Gelo mirov dikare li ser vê ravekirinê li hev bike?**

Helbet dikare. Ev ravekirineke di cih de ye. Tabî dema ku makeqanûna nû bê amadekirin, zemîn, rewş û mutabakata wê demê girîng e.

**Li hemberî we rexneyek wiha heye ku lîsteya namzedên AK Partiyê yên herêmê qels e...**

Ev nêrîna çend kesan e. Qunciknivîskar li gorî naskirin û nenaskirina wan kesan nirxandinan dikin.

**AK Partî tim behsa Plana Çalakiyê ya GAP'ê dike. Ev plan niha di çi astê de ye?**

Çend aliyên plana GAP'ê hene. Ya herî mezin razemeniya binasaziyê ye. Ya derbarê Diyarbekirê de ev e; di çarçoveya vê projeyê de wê 130 hezar hektar qad bê avdan. Ji bo ku ev yek pêk bê, wê ava ji Bendava Dicle Kral Kizi ji başûrê Dîcleyê, ji quntarên Qerejdaxê, ber bi Çinar, Bismil, Savûrê ve bibin. Ji bo vê yekê jî divê qenaleke pir dirêj bê çêkirin. Heta niha 44 kîlometre hatiye çêkirin. Sed kîlometre wê îsal bê temamkirin. Yên mayî jî wê di 2012'ê de bê qedandin. Plan li gorî plana me diçe, pereyên wê hatine veqetandin û înşeatên wê didomin. Heta niha ti astenî çênebûye. Li Batmanê wê 18 hezar û 500 hezar hektar qad bê avdan. Ew jî didome. Îhaleya Bendava Farqînê ku wê 245 hezar hektar qadî av bide jî heftiya borî hate kirin. Projeya van 3 avdaniyan bi qasî 400 hezar hektar qad digre.

**We ji bo vê yekê budçeyeke çiqas amade kir?**

Pereyê ku wê Wezareta Çandiniyê di çarçoveya Plana Çalakiyê ya GAP'ê de xerç bike, milyarek û 400 milyon e.

**Razemeniyên binesaziyê çawa dimeşin?**

Mînak em kanalîzasyonan çêdikin. Me li Diyarbekirê kanalîzasyonên 408 gundan çêkir. Dî dîroka Komara Tirkiyê de tenê li 11 gundên Diyarbekirê kanalîzasyon hatibûn çêkirin. Me di nava salek û nîv de li 408 gundan xizmeta kanalîzasyonê bir. Me pirsgirêka avê ya gundan çareser kir. Me kevirên di nava zeviyan de berhev kir û ew zevî ji çandiniyê re vekir.

**Li bajarên herêmê, gelek pirsgirêkên aborî û civakî (sosyo-ekonomik) hene. We ji bo van projeyên çawa çêkir?**

Me li Diyarbekirê gelek qursên pîşeyî vekir û em pere didin kesên ku diçin wan qursan. Di navbera salên 2003-2011'an de pereyê ku min li Diyarbekirê daye 49 hezar cotkarên qeydkirî, tam 1 katrilyon û 600 triloyon e. Min piştgiriya tov, mazot û gubreyê da. Ji bo berên ku dihilberînin me piştgiriya prîm da. Ji bo 233 projeyan me ji sedî 50 piştgiriya hîbeyê da. Ji van 79 heb tesîsên hilberînê ne, yanî fabrîqe ne. Di van deran de 9 hezar û 50 kesî dest bi kar kir. Ji van 79 fabrîqeyan hinek ji wan berên sewalan û hinek ji wan jî berên nebatan dihilberînin. Yên din jî sîstema avdaniyê ya nûjen a bi dilop e. Min li Diyarbekirê piştgirî da 101 Kooperatîfên Pêşvebirinê yên 273 malbatan. Me 125 trîlyon piştgirî da. Ev hilberîn dikin.

**Li Amedê karsaz dixwazin balafirgeheke sivîl bê avakirin. Ev daxwaza wan wê bê bicihanîn?**

Ev balafirgeha niha wê bê berfirehkirin û avahiyeke nû ya balafirgehê wê bê çêkirin. Ji bo ku seferên navneteweyî çêbibin, wê aproneke mezin bê çêkirin. Têkiliya wê ya bi qada leşkerî re wê pir bê kêmkirin. Balafirgeh jî heta salek û nîv wê biqede.

*Hevpeyvîn: Bawer Çem*




# "Dixwazim rojekê Leyla Zana bileyîzim"

Zîlan Odabaşi, 23 sal berê ji bavekî Kurd û dayîkeke Tirk hatiye dinyaye; weke hemû ciwanan ew jî li hîmên xwe geriya û wan li Amedê dît... Niha ji aliyekî ve perwerda xwe didomîne û ji aliyê din ve xwe di gelek aliyan de ji bo pêşerojê amade dike.

**Tu li ku derê hatî dinyayê û li ku mezin bûyî?**

Li Amedê hatim dinyayê û li Îzmîrê mezin bûm.

**Tu dema xwendekara dibistana navîn bû te dest bi karê rêzefîlm û şanoyê kir?**

Belê wê demê min destpêkir, lê min ji zarokatiya xwe ve ji bilî leyîstina hunerî ti kar xeyal nekiriye. Di dema xwendina min de jî hinek hewlên min çêbûn. Piştî ku min lîseyê bi dawî kir, min xwediya ajansa min a niha, Tumay Ozokur nas kir û bi wê re jî jiyana min a hunerî rasterast destpêkir.

**Te wê demê perwerda şanoyê dît û paşê jî tu ketî pêşbirka xweşikiyê û tu wek duyem hatî hilbijartin. Gelo ezmûn û perwerdeya te ji te re rêya navderiyê vekir an xweşikiya te?**

Şano û leyîstina rêzefîlman bo min beriya 6 salan destpêkirin. Pêşbirka xweşikiyê jî îsal bû. Min perwerda şanoyê dît û ez hê jî ji bo wê hewl didim; lewma ez dikarim bêjim ezmûn û perwerda min derî ji min re vekirin. Ji ber ku xweşikî tiştek relatîv e û îro heye, sibê tune ye.

**Piştî gelek rêzefîlman tu îsal di fîlmê bi navê Qirêj de leyîstî. Gelo tiştek çawa ye leyîstina di fîlmekî sînemayê de?**

Rêzefîlm li ser bûyerên rojane û bi lezgînî, û bêyî atmosfereke hunerî a balkêş tên kişandin. Ew roj li ser temaşevanan bandora xwe çêdike û roja din tê jibîrkirin. Pir ne sîstemeke hunerî ye. Mirov dema ku li paşerojê mêze dike, pir hindik rêzefîlm tên bîra mirov. Lê sînema tiştek cuda û hunereke gerdûnî ye. Hin fîlmên sînemayê hene ku mirov qet karakterên wî, xulekek wî ji bîr nake û dixwaze careke din, careke din dîsa temaşe bike. Ez rêzefîlman dişibînim wek gotinan, sînemayê jî dişibînim wek nivîsê. Gotin diçe, nivîs dimîne.

**Baş e, wek em fahm dikin tu dixwazî zêde di sînemayê de cih bigrî. Rolên çawa, fîlmên çawa tu dixwazî bileyîzî?**

Rast e, meyla min li ser sînemayê ye û eger ez hilbijartinekê bikim ez ê projeyên ku naverok û mijarên wan cidî bin, tê de pirsgirêkên civakî hebin, êş û xemgînî hebin, wek têkoşîna gelê Kurd, trajediyaya wî, xwestek û dilxwaziyên wî, bi kêfxweşî bileyîzim. Sînema yekem cûrê hunerê ye ku dikare peyama xwe bi hêsanî bigihîne her derê.

**Piştî te kursa zimanê kurdî dît, niha kurdiya te çawa ye? Di fîlmê Qirêj de axaftina ku te bi kurdî kir, axaftina te bixwe bû?**

Belê, kurdiya min niha têra min dike. Min kursê bi serkeftin qedand û sertîfîkaya xwe wergirt û wek hûn jî dizanin di fîlmê Qirêj de rolê sereke leyîstim. Hemû axaftin a min bixwe bû. Ango ez dikarim bêjim ez kurdî bi rêbazeke akademîk fêr bûm.

**Tu di hêla sîyasî û hunerî de herî zêde kîja jin a Kurd temaşe dikî? Kîja pir zêde nas dikî û eger rojekê derfet hebin tu dixwazî jiyana kê karakterîze bikî?**

Bersiva min pir zelal e: Jiyana Leyla Zanayê pir di zehmetiyan de derbas bûye. Ew di çavên min de bi cesareta xwe, bi serbilindiya xwe, jineke mînak e. Eger rojekê kesek bixwaze jiyana wê bîne ser perdeya spî, ez bi kêfxweşî dixwazim wê rolê bileyîzim. Herwiha ji ber ku ew jî wek min ji Amedê ye, di dilê min de xwediyê cihekî bi taybet e. Ji bilî Leyla Zanayê gelek jinên Kurd ên xwedî ked û tekoşînê hene, gelek ji wan di herêmeke wek Rojhilata navîn de bûne wek sembolên dîrokî. Ez bi hebûna wan şanaz im. Ev jî karê me sînemavanan e ku em serpêhatiyên wan ji nifşên dahatû re vebêjin, wan di dîrokê de bikin kesayetên nejibîrkirî.

**Te di hevpeyvîneke xwe de gotibû "Genetîka Amedê bi min re", armanca te çi bû bi van gotinan?**

Ez dema 40 rojî bûm diya min ji Amedê min dibe Îzmîrê û heta îsal, ji bo galaya filmê Qirêj, ez ti carî neçûm Amedê. Aliyê bavê min Amedî ne. Hemû reaksiyonên min, helwestên min, hewldan ên min li ser wî bajarî bûn. Wek ku ez ji wir im, wek ku ez li wir dijîm, min xwe hertim kesekî ji wî bajarî dît. Ji ber wê ez zêde cûdahî di navbera xwe û kesên ku li Amedê mezin bûne de nabînim.

**Di sînemaya Tirk de hejmareke zêde hunermendên Kurd hene. Eger tu karibî ji duh ber bi îro vê mêzebikî, li gor te Kurd kî ne û çi ne di sînemaya Tirk de?**

Nêzikatiya ku ji dema sînemaya Yeşilçamê destpêkir em dikarin bêjin hê jî didome. Karakterên Kurd di sînemayê de bi gelemperî wek xulam, gundî, kujer, nezan, saf, ziman qirêj, komîk in. Axaftina bi zimanekî xirab, ango tirkiyeke xirab Kurd didin naskirin. Lê dikin nakin ev karakter bal nakişînin, xav dimînin. Li gor baweriya min ew Kurdan çawa dibînin, dixwazin çawa bibînin, wisa karakterîze dikin. Karakterên Kurd ên rastî ya nabînin ya jî naxwazin bibînin. Ev tişt li Amerîkayê jî wisa ye. Di sînemaya Amerîkî de hemû karên xirab û gemar bi leyistikvanên reşik didin kirin. Kurd jî di sînemaya Tirk de wek reşikên Amerîkî tên dîtin. Lê piştî ku çendîn derhênerên Kurd derketin û fîlmên xwe kişandin, ev nêzikahî qels bû û êdî gelek kes dizane ku Kurd ne wisa ne. Niha astek wiha derketiye: Kesekî bixwaze di sînemayê de projeyeke cidî çêbike, hewl dide ku Kurdan bi nêrîneke objektîf vebêje.

**Êdî filmên cidî ên sînemayê rastiya Kurdan objektîf nîşan didin**



**Wek ku di qada sîyasetê û burokrasiyê de Kurd tên cûdakirin, ev nêzikatî di sînameyê de jî heye li dijî hunermendên Kurd?**

Ez zanim ku gelek hunermendên Kurd ji ber vê nêzikatiyê ditirsin ku bêjin ez Kurd im. Li Tirkiyê di her alî de ev heye, dema ku alozîyeke, pevçûneke civakî derdikeve, li gor nasnameya te nêzikê te dibin. Tiştên ku di jiyana rojane de derdikevin eger di hunerê de jî derkevin wê demê ew huner dikeve xeteke şaş. Huner divê rastiyê veneşêre û înkar neke. Mînak, demên pêşî Yilmaz Guney rolên sivik û bê bandor dileyîst; lê dema ku wî bi xwe senaryo nivîsand û fîlmên xwe kişandin rastiyan derxist holê û hem bala me hem jî bala dinyayê kişand ser xwe.

**Ji ber ku navê te Zilan e tu qet rastî astengiyan û reaksiyonên cuda tê?**

Beriya her tiştî, ez bi navê xwe pir şanaz im. Dema ez biçûk bûm, di dibistana seretayî de min ji ber navê xwe gelek zehmetiyan, cudahiyan kişandin, lê min ti caran guh nedida wan nêzikatiyan. Îro, di sektora sînemayê de heta niha ji min re astengiyek dernexistine. Lê ez nizanim li dû min, li pişta deriyên girtî çi tê gotin.

**Niha tu rojên xwe çawa derbas dikî?**

Min niha hemû enerjiya xwe daye ser perwerdeya xwe. Ez xwendekara beşa Radyo-Televizyonê me û niha xwe ji bo îmtihanê amade dikim. Herwiha kursa min a kurdî û fransî jî ev bû salek hê didome. Dema ku ez wextê vala dibînim pirtûk dixwînim, bi kûçikê xwe Charlot re mijûl dibim, meditasyon û pilates dikim. Niyeta min heye ku ez mamostatiya pilatesê bikim.

**Ji herêma Kurdistanê ji bo fîlmekî bang li te bê kirin...**

Ez ê bi kêfxweşî bêjim erê; li cihên ku Kurd tê de dijîn, ku der dibe bila bibe ez amade me di projeyên ciddî de cîh bigrim.

*Hevpeyvîn: Mehmet Sebatli*

## Ahmet Kaya tê Almanya!




*Rûdaw* - *Jiyana Ahmet Kaya ya li derveyî welat bû belgefîlm. Belgefîlmê bi navê 'Yagmurlu Ulkenin Surgunu' ango Sirgûnê Welatê Bi Baran" li Almanya li Berlîn, Bochum, Wuppertal û gelek bajarên din tê nîşandan.*

*Belgefîlm li Tirkiye, Almanya, Fransa, gelek welatên din ên Ewrûpayê û li başurê Kurdîstanê hatiye kişandin. Derhenêrê belgefîlm sînemavan Hayri Argav e. Belgefîlm, li ser ew roja reş a qedera hunermend Ahmet Kaya hatiye guhertin, destpê dike û li ser wê saz dibe. Argav bi kameraya xwe dikeve pey şopa Ahmet Kaya û li 5 welatan nêzikî 30 kesî re hevpeyvîn çêdike. Bi dehan konser û axaftinên Ahmet Kaya jî arşîvên cuda derdixe holê. Argav, di axaftinek xwe de dibeje;" Ev belgefîlm gelek zehmet bû. Em li ser jiyana hunermend a 20 salî rawestiyan. Me ji gelek arşîvan dîmen û axaftin derxistin. Armanca me ew bû bi nêrînek zelal jiyana hunermed bînin ser perdeya spî."*

*Belgefîlmê li ser jiyana Ahmet Kaya bi piştgiriya Yekîtiya Xwendevanên Kurdîstan (YXK) di serî de li Berlin, Bremen, Wuppertal, Aachen, Gorlitz û Bochumê tê nîşan.*

*Belgefîlm roja 29`ê Gulanê jî di çerçova 3. Rojen fîlmên Kurdî li Kolnê tê nîşandan.*



Wêne: Rûdaw

# Kongreya Kurdolojî bê saziyên Bakur civiya

▶"Pêwîst bû bi kêmanî beşeke kongreyê li ser zimanê fermî û pirsgirêka zimanê kurdî bûya."

▶"Ev kongre jî weke hemû kongreyên din tama îdyolojiyan jê dihat û gelek saziyên girîng nehatin vexwendin."

**Ebdulla Nihêlî**

Bi beşdariya 200 zimanzan û pisporên taybetmend ên zimanê kurdî li cîhanê û her çar parçên Kurdistanê û bi dirûşma 'kurdolojiya biyavekî zindî ji kulturê mirovatiyê' Zanîngeha Duhok bi alîkariya Înstîtuta Kurdî li Parîs di rojên 1-3 Gulana 2011'ê de, Kongreya Kurdolojiyê ya Navnetewî ya duyem li bajarê Duhokê hat lidarxistin.

Pispor û amadebûyên kongreyê diyarkirin ku girîngiya kongreyê hevnasîn û guhertina e-mail, telefon û pirtûkan bû. Çend nivîskaran jî diyarkirin ku pêwîst bû di vê hevcivîna wiha mezin a zimanivan û pisporên zimanê kurdî de behsa zimanê yekgirtî, elfabê û zaravên kurdî jî bihata kirin.

Mamosteyê Beşa Zimanê Kurdî li Zanîngehiya Duhok Dr. Kamîran Berwarî dibêje "ev kongre jî weke hemû kongreyên din tama îdeolojî û partîtiyê jê dihat, ji ber ku gelek saziyên girîng ên zimanê kurdî li Amed, Bakurê Kurdistanê, Mexmûr û Qendîl hebûn, lê nehatibûn vexwendin."

Derbarê nebehskirina zimanê standart Dr. Kamîran Berwarî bo Rûdaw dibêje "armanca kongreyê ew nebû ku behsa zimanê standart bikin, kongre li ser kurdolojî, nasandin û cografiya zimanê kurdî bû. Rast e behskirina zimanê standart girîng e, lê ez wiha hizirnakim ku dirustkirina zimanekî standart ji bo Kurdan, karekî gelek bi zehmet be, her gava Kurd bixwazin dikarin zimanekî standart dirust bikin, pêwîstiya vê bi biriyareke siyasî heye."

Lêkolînerê zimanê kurdî profesor Dr. Celîlê Celîl ku ji Viyena beşdarî kongreyê bibû, got derfeteke baş hebû ku ev kongre behsa zimanê standart, elfabê û tîpên Latînî û Erebî bikira. "Girîngiyeke van lihevcivînan mezin heye, hevnasîneke baş di navbera pispor û şarezên zimanê kurdî li hemû cîhanê çêbû, lê mixabin weke pêwîst behsa zimanê standart û zimanê fermî yê Kurdan nehat kirin, ji ber ku mezintirîn pispor kombibûn û delîveke baş bû ku mijarên berfireh li ser zimanê standart jî bihata behs kirin."

Serokê Înstîtuta Zimanên Zindî li Zanîngeha Mêrdînê Profesor Dr. Kadrî Yildiz bo Rûdawê dibêje "hevnasîneka baş di navbera zimanzanên hemû Kurdistanê de çêbû, bi taybetî ji bo me geleke girîng bû, ji ber ku ev saleke me dest bi xwendina zimanê kurdî kirin, me e-mail û adresên xwe lihev guherandin û ji bo pirtûkan jî em ê gelek sûdê ji hevdu wergirin." Yildiz jî weke profesor Celîlê Celîl dibêje "geleke girîng bû ku behsa elfabêya tîpên kurdî û paşeroja wê bihata kirin."

**Pispor dibêjin di kongrê de li ser zimanekî standart nehatiye axaftin, tenê girîngî dane hevnaskirina zimanzan û pisporan**

Her yek ji profesor Dr. Eknas ji Kazaxistanê, Dr. Coys Bîlu ji Parîsê, Dr. Xalid Xeyatî ji Swêdê, Profesor Dr. Bircîn ji Almanya û Reşo Zîlan ji Parîs giringiya sazkirina kongreyê bo baştirkirina peywendiyên di navbera zimanzanên Kurdan de li hemû cîhanê dibînin û dibêjin "ev lihevcivîn û kongre ji bo baştirkirina hevnasîn û xurtkirina peywendiyên di navbera vekoler û pisporên zimanê kurdî de li her derê cîhanê hebin gelekî girîng e."

Serperiştê kongreyê Profesorê Alîkar Dr. Ebdilwehab Xalid dibêje "vexwendina ji bo beşdarîkirina di kongreyê de ne li ser bingeha partî û îdeolojiyan bû, lê li ser taybetmendî û pisporiyên li ser kurdolojiyê bû, lewma hemû alî û her ciyê ku Kurd lê hene, bêyî berçavkirina aliyê siyasî me daxwazkirine." Dr. Ebdilwehab Xalid dibêje "ji Ewrûpa 24 pispor, Rojava û Bakurê Kurdistanê 9 pispor, Parêzgehên Herêmê, Mûsil û Bexda 33 û Parêzgeha Duhokê jî 80 kes weke endam beşdarî kongreyê bibûn."

Ji mîvanên ku hatibûn vexwendin, mêvanên Rojhilatê Kurdistanê û du pisporên din ên welatên Ewrûpa nekaribûn beşdar bibin, Ebdilwehab dibêje "ew herdu mêvanên Ewrûpî ji ber hin karên girîng nekarîn amade bibin, lê yên Rojhilatê Kurdistanê ji ber destûr nedayînê ji aliyê zanîngehên wan li Îranê nekarîn beşdarî kongreyê bibin."

Li dawiya kongreyê çendîn pêşniyar û talîmat li kongreyê hatin ragihandin, Ebdilwehab dibêje "di wan pêşniyaran de hat ragihandin ku piştî çar salên din kongrekê din a kurdolojiyê li Bakurê Kurdistanê bê sazkirin, çendîn konferans li deverên cuda li ser zimanê yekgirtî û elfabeya pîtên kurdî bên sazkirin, hemû endamên korgrê pêşniyarkirin ku di vê demê de girîngî bi hemû zaravên kurdî bê dayîn û ti zarava nehên paşguhavêtin."

Derbarê nebehskirina zimanê standart D. Ebdilwehab dibêje "kongre li ser kurdolojî û kultur û cografya zimanê kurdî bû, lê ne li ser zimanê standart, tevî ku çend lêkolînek li ser diyalêkt û zaravên kurdî jî hatin pêşkêşkirin."

# Akademisyenên Kurd li rola xwe digerin



Wêne: Rûdaw

**Li ser vexwendina NAVEND’ê zêdeyî 50 akademisyenên Kurd li Bonnê civiyan.**

**Bonn (Rûdaw) -** Li gor texmînan li Ewrûpayê bi hezaran akademisyenên Kurd dijin. Piraniya wan di sazî û dezgehên wan welatên ku lê dijîn de dixebitin û pêwendiyên wan akademisyenên Kurd ligel kêşeya kurdî an kêm e, an qet tune. Lê beşek ji akademisyenên Kurdên Ewrûpayê ji bilî karê xwe di dezgeh û karxeneyen Ewrûpî de, hewl didin ku li Ewrûpayê rola xwe weke “Diyaspora Kurd“ bileyîzin. Bi vê armancê gelek caran civînên berfireh tên lidarxistin û hewl tê dayîn ku civîn di proje, dezgeh û saziyên fermî de bi encam bibin. Saziya NAVEND’ê (Navend ji bo Lêkolînên Kurdî) jî bi vê armancê ev çendîn sal e civînên akademisyenên Kurd û biyanî lidardixe. Yek ji van civînan dawiya hefteya borî (8-9.05.2011) li bajarê Almanya Bonnê, di bin navê “Di konteksa Ewrûpa de Kurd” hat lidarxistin û dora 50-60 kesayetên akademîsyen beşdarî civînê bûn.

Mina di gelek civînên akademisyenên Kurd li Ewrûpayê, di vê civînê de jî tiştek berbiçav bû: Akademisyenên Kurd dixwazin rola xwe weke “Diyaspora Kurd“ li Ewrûpayê bileyîzin, lê hêzek ku îmkanan bide wan, wan weke derfetek bike dewrê, neta niha li paş wan tune. Ji ber vê yekê piraniya van civînan bêbandor û bêberdewam dimînin. Tevî ku di vî warî de gelek hêvî ji dezgehên Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî tên kirin, û heta gazinc jî tên kirin ku bi qasî ku pêwîst e Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Kurdên Diyasporayê xwedî dernakeve, lê hewldan û piştgiriya ji aliyê Hikûmeta Herêma Kurdistanê kêm tê ditin. Heta yek ji beşdarên civînê psîkolog Prof. Dr. Îlhan Kizilhan pêşniyaz kir ku divê Kurdên Diyasporayê êdî li xwe jî bifikirin û wiha got: “Divê Kurdên Diyasporayê ne “bexçeyê pişt“ ê Kurdistanê bin û rêvebiriya Kurdistanê jî bi çavê ku “ew terefeke ku dikare bê bikaranîn“ li wan nenêre.“

Di dawiyê de ev civîn jî bû cihê kêfxweşiya beşdaran, lê berhemên wê belkî di pêşerojê de baştir bixuyên. Belkî mezintirin berhema vê civînê jî hevnasîna akademisyenên Kurd bû.

# “Min negirin ezê wan bikujim”

# “Min bigirin ezê xwe bikujim”













**Belçîka (Rûdaw) -** Roja 02.05.2011 ciwanekî Kurd telefonî polîsên Belçîka dike û wan agahdar dike ku “ew ê herê çayxaneyekê û xelkê bikuje.” Polîs li sedemên vê biryara ciwanê Kurd yê 21 salî bi navê Hesen B. dipirsin, lê ew bersivê nade wan. Li ser vê yeke polîs çayxanê ji daxwaza ciwanê Kurd haydar dikin. Lê dema polîs diçin çayxanê, her tişt normal e û ti tiştekî ne normal naxuyê. Li ser vê yekê polîs berê xwe didin mala Hesen B. û dema ciwanê Kurd dibîne ku polîs dixwazin bikevin mala wan, ew kêrekê digre destê xwe û diçe ser banê malê û gefan li polîsan dixwe ku ew ê xwe bikuje eger hewl bê dayîn ku wî bigrin.

Weke ku paşê eşkere bû, sedema van tevgerên ciwanê Kurd ew bûye ku roja berê polîs wî û dosta wî ya keç li nêzî çayxaneyek li navenda wî bajarî binçav dikin û lêkolînê derbarê wan de dikin û jêre dibejin ku nabe ew ligel wê keçê wiha tevbigere, ji ber ku keç di jêr 18 salan de ye. Roja piştre ew ciwanê Kurd hewl dide ku dosta xwe bibîne, lê rê nadinê, ji ber temenê keçikê di bin 18 salî re ye. Li beramberî wê yekê jî ew ciwan dest tavêje telefonê û gefan dixwe.

Ev yek jî bala çapemenî û gelê navçeyê dikşîne ser xwe. Wekî di dîmenên ku Rûdawê ji kanalên navxweyî yên bajarê Gent wergirtî, polîsên Belçîka hewl didin ku wî ciwanê Kurd poşman bikin, lê ciwan dibeje ku ew dixwaze hevala xwe ya keç bibîne, wekî din ew jî banê nayê xware û bi kêrê xwe birîndar dike. Polîsên belçîkî jî hevala keç a Hesen B. tînîn pêş malê û keçik ji Hesen re dibeje ku ew dixwaze wî li jêrê bibîne û daxwaza daketina ji banê xanî ji Hesen B. dike. Dema Hesen ji banê xanî dadikeve, ew ji aliyê polîsan ve tê girtin û berê wî didin girtîgehê.

Rûdawê peywendî ligel polîsên wî bajarî ve girêda û berdevkê polîsan got: “Me saet 17.00 bi hewla hevala wî ya keç û efserên polîsan karî wî ciwanî ji xwekuştinê poşman bikin.” Lê berdevkê polîsan derbarê nasnameya wî ciwanê Kurd de got: “Niha hatiye girtin û heya lêkolîn temam nebin, em nikarin di wê derbarê de ti zanyariyan belav bikin.”

## Di 1988'an de Kurd Enfal kir û ev mizgeft ava kir

# Li Bîrmînghamê Mizgefta Saddam

**Birmingham (Rûdaw) -** Di nava dilê bajarê Birminghama Birîtanya de "Mizgefta Serok Saddam Huseyîn" heye. Tevî ku ev demek e navê mizgeftê li derve hatiye guhertin, lê di nav mizgeftê de navê wî li ser berek mermer bi îngilîzî û erebî wek xwe maye. Ew mizgeft di Nîsana 1988'ê de ango dema pêla Enfalê li Kurdistanê dest pê kir, hatiye vekirin.

Berê li ser dîwarê derve yê mizgeftê bi tîpên zêrîn nivîsa "Mizgefta Serok Saddam Huseyîn" hebû, lê sala 2003'ê bi heman tîpan "Mizgefta Birmingham" hat nivîsandin. Rûdawê roja 9'ê Nîsana 2011'ê serdana mizgeftê kir. Li çar kevanên awayê dergeh ku dikeve aliyê pêş ê mizgeftê û li ser cadeyek qelebalix berê xwe didinê. Dergehê çûna hindir dikeve nav kevana yekemîn a destê çepê.

Dema em di dergehî re derbazî hundir bûn, wekî tu ji Birîtanya biçî Pakîstanê. Gelek Pakîstanî hene. Rihê hinekan spî û dirêj e, yê hinekan jî reş û tenik e. Ew navend ji aliyekê ve diçe gel sêlmek ku diçe qatên jor ên mizgeftê. Li aliyê din diçe dergehekê û ji kenar ve firoşgeh û salonên biçûk diyar dibin. Di nava sêlim û dikanan de berek mermer ê mezin bi dîwar ve hilawistiye, bi erebî û îngilîzî nivîsandinek bi vî awayî heye: "Bi navê xweda yê mezin û dilovan/Mizgefta Serok Saddam Huseyîn/Fermana avakirina vê mizgeftê ji aliyê Serokkomarê Îraqê birêz Saddam Huseyîn ve hatiye dayîn/Di sala 1408'ê koçî-1988'ê zayînî de bingehê wê hatiye danîn." Heman "Serok" di heman salê de (1988) Kurd Enfal kiribû.



Wêne: Rûdaw



Wêne: Rûdaw

**Jor: Navê berê yê mizgeftê.**
**Jêr: Piştî sala 2003 navê li derve hat guhertin.**

### Di mizgefta Saddam de pêlava Saddam

Ji bo çûna hindir divê em pêlava xwe derxin. Ez temaşeyî pêlavan dikin. Gelek ji wan qûndireyên qehweyî ku berê li Îraqê ji wan re digotin, "Sadamî" hebûn. Lewra bi pêkenîn ve bersivê didim: "Qabîl e di mala Saddam de pêlava Saddam bê dizîn!"

Em bi wênegirtina mermer û kesên nimêj dikin ve mijûl in. Piraniya wan cilên spî yên Pakîstanî li ser wan bû û di ber me re derbas dibûn. Temaşekirina wan bi gûman bû. Ez nêzî yekê bûm û min jê pirsî: "Ez dixwazim li gel melayê mizgeftê biaxivim." Ew zilamê bi temene, bi dest balê dikişîne aliyê din û dibêje: "Li jor e." Li kêleka silêmê hêjmarek zêde ya kesên nimêj dikin rûniştibûn. Dema ber wan re derbaz dibim, selamê didim wan û hewl didim bi wê yekê gûmanê birevînim. Car caran jî dipirsim: "Mela li kû derê ye?"

Dest yek bi yek min digihînin gel wî kesê ku ez li pey digerim. Tişta yekem a min ji wî kesî bihîstî ev e: "Di nava mizgeftê de wêne girtin qedexe ye û here li derve wêne bigre." Ez di pirskirinê de berdewam dibim û ji wan re dibêjim ku rojnamevan im. Ew li gel xwe me dibe qatek jortir, em çûne odeyekê û zêdetir wekî fermangehek a hikûmî bû. Kesek din jî li gel hat hindir. Ew kes li piya rawesta û guhdariya min dike. Piştre dibêje: "Me berdevkê fermî heye û em nikarin ti daxûyaniyekê bidin. Ev hêjmara telefona wî ye û peywendî li gel bikin." Lê di nava wê yekê de em dest bi axaftinan dikin.

"Ev mizgeftek a Sûnniyan e. Di dema xwe de Serok Saddam Huseyîn 2 milyon Pound ji bo avakirinê veqetand û di nîsana 1988'ê de vekir." Meha Nîsana 1988'ê wekî zengekê di guhê min de lê dide û di dilê xwe de dibêjim: "Çi hîkmetek tê de ye Saddam wê demê li aliyekê li vê derê ji Pakîstaniyan re mizgeft ava dikir û li aliyekî din jî li Kurdistanê li dijî Kurdan qetlîam dikir?"

### Ji bo "Mûcahîdan" daxwaza serkeftinê

Qaşo wê demê xêrxwazek Pakîstanî yê bi navê Hezretimya Qazî fikra avakirina mizgeftekê biriye gel konsûlxaneya Erebîstana Siûdî, Lîbya û Îraqê ya li Londonê. Wê demê hê jî birînên şerê navbera rejîma Saddamê Sûnnî û Xumeyniyê Şîe zûha nebûbû.

Herdu mirov me li gel xwe dibin gel firoşgeha qata jêr. Li wê derê wêneyekê berê yê mizgeftê nîşanê me dide ku navê kevin li ser e. Herwiha dosyeyekê didin me ku zanyariyên derbarên "Karê xêrxwazî yê Serok Saddam Huseyîn" li Birîtanya, Senegal, Awustûralya, Kanada, Malî û Sirîlanka di nav de hebûn.

Kesek din ê nimêjê dike guhdariya guftûgoya me kiriye û dibêje: "Piştî êrîşa zordar a li ser Îraqê" piştre selewatekê ji bo Saddam têne û daxwaza serkeftinê ji "Mûcahîdan" re dixwaze. Piştre dibêje; "Îraqiyên Şîe dixwestin mizgeftê ji me wergirin, lê serneketin."

### Çima navê wê hat guhertin?

Piştre me telefonî Ehmed Qazî kir. Ew kurê Hezretîmya Qazî ye û niha berdevkê mizgeftê ye. Ehmed Qazî red dike ku bi awayek fermî ji aliyê ti fermangehek a Îraqê ve daxwaza wergirtina mizgeftê hatibe kirin. Lê na veşêre ku "Hinek grûbên Şîe hebûn û dixwestin vî karî bikin." Herwiha dibêje: "Ev jî nayê kirin, ji ber navê me wekî saziyek fermî li tomara Birîtanya heye û ti kes nikare mizgeftê wergire."

Derbarê sedema guhertina navê wê ku di çapemeniya Birîtanya de ew yek hatiye belavkirin ku di bin zextên gelê Birîtanya û piştî hilweşandina rejîma Saddam ew kar hatiye kirin. Çend caran êrişî mizgeftê hatibû kirin û nameyên gef xwarinê jê re rêkiribûn, lê Qazî ji Rûdawê re dibêje: "Sedema wê ji ber karûbarên îdarî yên wekî sîgorta û wan tiştan, pêwîstiya me bi guhertina navê wê hebû."

### Li vê derê jî Saddam li gel me ye

Kurdên rûniştvanê Birminghamê dibêjin, ji zû de ye dizanin bi wî navî mizgeftek li bajarê wan heye. Dilzar Ehmed (34) ji Hewlêrê ye û ji Rûdawê re got: "Dema min bihîst, ne kêfxweş bûm û ne jî dilteng. Tenê matmayî mam. Ez difikirîm ku nehametiyên me li Îraqê ji ber Saddam bûn û lewra gihabûn vê derê. Lê li vê derê jî her li gel me de bû." Lê Hejar Elî (21) ji Kelarê ye û dibêje: "Bi min asayî bû dema min bihîst, ev tiştên bi vî awayî ji welatên Ewrûpa tê çaverêkirin."

### Karên "Xêrxwaz" ên Saddam Huseyîn

*Li gor dosyeya li Mizgefta Saddam Huseyîn a li Birminghamê ye, serokê Îraqê yê berê ji bilî mizgefta Birmingham, cihên ayînî li gelek cihên din ên cîhanê ava kiriye:*

- *Li Bangladeş Mizgefta Şêx Ebdulqadirê Geylanî (1 milyon û 650 hezar dolar ji bo avakirinê lê çû)*
- *Mizgefta Saddam Huseyîn li bajarê Sîdnî yê Awustûralya (1 milyon û 800 hezar dolar ji bo avakirinê lê çû.)*
- *Li Senegal Navenda Rewşenbîrî ya Îslamî li bajarê Dakar (750 hezar dolar lê çû)*
- *Li Senegal Mizgefta Mezin a Kadlax (250 hezar dolar lê çû)*
- *Li Sirîlanka gundê Saddam Huseyîn, ji 150 mal û dibistanek olî pêkhatiye. (400 hezar dolar lê çûye)*
- *Li Komara Malî Peymangeha Saddam Huseyîn ya ji bo Lêkolîna Îslamî (79 hezar dolar lê çûye)*
- *Li Roma veqetandina pereyan ji bo avakirina Navenda Îslamî (9 milyon dolar jê re hatibû veqetandin). Veqetandina pere ji bo avakirina navendekê li Naycîrya (135 hezar dolar jê re hatibû veqetandin)*
- *Veqetandina pere ji bo dû navendên Îslamî li Endûnezya û Pakîstanê (210 hezar dolar jê re hatibû veqetandin)*


Wêne: Rûdaw

# Çûna umrê li Kurdistanê îsal du qatan zêde bûye

Rêveberê geştên hec û umrê li Kurdistanê bal dikişînin ser heciyên îsal û dibêjin, "Ji sedî 65 geştiyên îsal bo umrê kesên ciwan in. Lê ji bo ku cihên dîrokî bibînin, diçin."

**Rewa Ebdulla** Hewlêr

Xwediyên şirketên hec û umrê amaje didin ku îsal hejmara geştên wan bo umrê li gor salên borî pir zêdetir bûne. Rêveberê geştên hec û umrê li Herêma Kurdistanê bi wekalet jî got: "Nêzîka ji sedî 65'ê geştyarên îsal ên umrê ciwan in."

Rêveberê giştî yê şirketa Siudiyê bo geştên hec û umrê li Hewlêrê Seyd Ebdulla Mihemed daxuyand, hejmara geştyarên umrê li şirketa wan li gor par ji sedî 50 zêde bûye û got, tenê di du mehên borî de 1800 kes şandine umrê, niha jî 400 kesên din navên xwe tomar kirine: "Ji bilî ciwanan îsal gelek kes hene bi mal û zarokjan diçin umrê."

Derbaz Îzedîn (19) ji şirketeke geştyarî ya hec û umrê navê xwe tomar kiriye û di 20'ê Gulanê de diçe. Derbaz pir bi lez e bo vê geştê: "Roj derbas nabin." Derbaz ku di polê 11'ê amadeyî de ye, piştî xilaskirina ezmûnan dawiya salê diçe.

Gava xizmekî wî behsa xweşiyên geşta umrê jê re dike, Derbaz jî biryar dide here: "Dixwazim di vê geştê de ji rastiya ola Îsalmê fam bikim û bi çavê xwe wan cihan bibînim ku pêxemberê Xwedê ji bo belavkirina Îslamê êş li wan kişand."

## Di du mehan de 15 hezar û 478 kes çûne hec

Li gor amara rêveberiya giştî ta hec û umrê ya Herêma Kurdistanê, tenê di hundirê 2 mehên borî de 15 hezar û 478 kes çûne umrê, ev di demekê de ye ku par tenê 13 hezar kes ji Herêma Kurdistanê çûne umrê.

Bi baweriya Seyd Ebdulla, başbûna rewşa darayî ya xelkê û hêsaniya geşta umrê ji ber hebûna firokexaneyan li Hewlêr û Silêmaniyê û bilindbûna hişyariya olî, sedemên serekî yên zêdebûna salane ya geştên umrê ne li Kurdistanê: "Berê giştî yê ciwanan niha zêdetir bo geştên olî ye, lê ne geştên welatên geştûguzarî."

Wateya peyva umre, serdan e. Di umrê de, mirov li Mekkê 7 caran li dora kevirê Kabeyê yê dizivire, herwiha çûnûhatin di navbera Sefa û Merwa de, kirina hinek merasîmên din û serdana cihên pîroz li Medînê lixwe digire.

Bextiyar Xorşîd (29) carekê umre kiriye û bi niyet e niha umreyeke din jî bike û dibêje: "Geşta umrê qet nayê berhevkirin ligel geştên normal ên din. Ji ber di aliyê olî de jî xêra wê zêde ye, mirov pak dibe ji gunehan."

## Îsal 33 şirket li Kurdistanê geşta umre sazdikin

Ji ber xwestina zêde li ser umrê hejmara şirketên ku geşta umrê saz dikin zêde dibin. Li gor amara Rêveberiya Giştî ya hec û umrê ya Herêma Kurdistanê 33 şirket li Kurdistanê îsal geşta umrekaran saz dikin.

Rêveberê Kargêrî yê Komeleya Şirketên Geştûguzar û Hec û Umrê Rêbiwar Azad ragehand ew bi hemahengî ligel Wezareta Ewqaf çavdêriya xizmetguzarî û karê şîrketan dikin û got: "Par me 6 şirket xistin lîsteya reş ji ber ku pereyên zêde ji xelkê standibûn, lê îsal heta niha bi nirxên diyarkirî pêbend in, karên xwe bi rêkûpêkî dikin."

Rêveberê Giştî yê Hec û Umreya Herêma Kurdistanê bi wekalet Seyid Ezîz Hesen daxuyand ku Erebistana Siudiyê weke geşta hecê, sînor bo geştyarên umrê ne daniye, loma sal bi sal hejmara umrekaran zêde dibe. Navbirî pêşbînî kir heta dawiya îsal 30 hezar kes ji Herêma Kurdistanê herin umrê.

Bi baweriya Seyd Ezîz, yek ji sedemên zêdebûna hejmara ciwanan bo geşta umrê ji bilî sedemê olî vedigere bêpariya ciwanan ji geşta welatan di sala borî de: "Gelek ciwan ji bo dîtina cihên geştyarî û dîrokî yên Medînê û Mekkê diçin umrê."

# “Eger em Siriusê tek bibin, lîder em in”

Qelevan

Adil Kizil · Frank.P

Defans

Alexander.E · Peshraw Aziz · Besnik Curri · Engin Sahindal · Gustav.S · Rasmus.L

Navenda sahayê

Brwa Nouri · Alan Ayik · Ciwan Kizil · Michael Omoh · Ammar Ahmed · Mirza Jelecak · Smajl Suljevic · Vedat.A · Karim Rebai · Ahmet Abic · Robert M.M · Ahmed Awad · Colo Halit

Forvet

Aziz Milli · Amor Layoni · Aki Odi Ekine · M.Jidsjo

DalKurd bê lîstikvanên forvet heta niha 10 gol avêtine û bûye xwediyê averaj a herî zêde. Tîma Keçan a DalKurdê jî di maça yekemîn de dijberê xwe 9-0 têkbir.

**Dalarna (Rûdaw) -** Klûba futbolvanên Kurd DalKurd xwe ji maça ligel Sirius ku wek favorîtê lîgê tê nîşandan, dike. Sirius sala borî ji lîgeke jor daketiye û li gor 14 antrenorên hemû tîman wê lîderê vê sezonê ev tîm be. Serokê Klûba DalKurdê Ramazan Kizil ragihand maça herî zehmet ev e, “eger em biserkevin, dikarim bêjim em dibin lîder.” Di 4 maçan de du serkeftin, yek beramberî û yek jî têkçûna DalKurdê heye û pûanên wê 7 in. Sirius jî xwediya 4 pûanan e û heta niha di 4 maçan de tenê carek biserketiye û carek jî beramber maye.

Serokê Klûba DalKurdê Ramazan Kizil daxuyand ku ew di 4 maçên borî de bê forvet leyîstine û kadroya wan hê jî temam nebûye. Kizil got, “Niha tîma ku herî zêde gol avêtiye em in. Du forvetên me yên xurt, hê jî amade nebûne ku bileyîzin. Yek ji ber pirsgirêkên vizeyê hê ji Afrîkayê nehatiye û Mikail Jidsjo ku berê di lîga Super a Swêdê de dileyîst, ji ber seqetiya xwe nekariya bileyîze. Em bi hêvî ne ku di dawiya Gulanê de karibe bileyîze.” Wek ku Kizil got wan ji futbolvanên ciwan û ji yên saheya navîn forvet derxistine û wisa biserketine.

Wek ku Kizil ragihand wê têkoşîna vê sezonê di navbera DalKurd û Sirius de derbas bibe û tê çaverêkirin ku ji herduyan yek bibe şampiyon.

### Tîma keçan: 9-0

Ramayan Kizil ragihand ku tîma wan a jinan jî di maça yekemîn de li derveyî saheya xwe 9-0 biserketiye û vê heftê di saheya xwe de maça duyem dileyîze. Tîma DalKurdê ya jinan ji 20 futbolvanên keçên Swêdî yên temenê wan navbera 18-20 de ye, pêktê. Kizil ragihand ku çend keçên Kurd jî ketine nav tîmê.

## Tîma Şaredariya Mezin digihe Play-Offê

Tîma Şaredariya Mezin a Amedê ku niha di lîga 3`mîn de dileyîze dijberekî xwe yê xurt têk bir û xwe bêhtir nêzî maçên Play-Offê kir. Pûanên Tîma Şaredariya Mezin a Amedê niha 53 ne û ji wan 28 pûanan li deplasmanê bidestxistine. Tîma Amedê maça dawî hefta borî ligel Denizli Belediyespor li bajarê Denizli leyîst û maç 1-1 bi dawî bû.

Yek ji berpirsyarên tîma Amedê Ekrem Yeşil, ragihand ku ew li gor hesabên matematîkî hê ji sedî sed negihane asta Play-Offê, lê got, “divê em maça dawî winda nekin û 3 pûan bistînin.” Eger Tîma Şaredariya Mezin a Amedê di maçên Play-Offê de biserkeve wê têkeve lîga 2`min.



## Kampanya aboneyan berdewam e




Rûdaw bi helkefta meha Newrozê kampanyek nû destpê kiribû û ev kampanya hat dirêjkirin. Heta dawiya Nîsanê bibe abone û 3 mehan bêpere Rûdawê bixwîne. Piştî 3 mehan abonetî otomatîk bi dawî dibe. Ji bo abonetiyê forma jêr ya abonetiyê dagire û ji Rûdawê re bişîn. Zûtir û hêsantir bi rêya e-mail dibe: navê xwe, hejmara telefona xwe û navnîşana xwe ji **info@rudaw.eu** re bişîn û di zûtirîn demê de Rûdaw dighije ber destê we.

### Abonetiya Rûdaw

Ez dixwazim ji bo dema

☐ Sê mehan bê pere ☐ Şeş mehan ☐ Salekê ☐ Vekirî

bibim aboneyê/ya rojnameya Rûdaw.

Rojnameya min heftane bişînin vê navnîşanê

Nav : ____________________

Paşnav : ____________________

Navnîşan : ____________________

____________________

Telefon a min : ____________________

E-Mail a min : ____________________

Buhayê abonetiyê ji vê kontoyê bikşînin;

Hejmara kontoyê : ____________________

Şîfreya bankê (BLZ) : ____________________

Bank : ____________________

Xwediyê kontoyê : ____________________

Dem û cîh: ____________ Destnîşan: ____________

Anjî ez ê bihayê abonetiyê bişînim ser kontoya Rûdawê ya li jêr û dekontoya wê ji navnîşana Rûdawê re bişînim.

Bihayê abonetiya salekê ji bo nav Almanya: 60Euro
Bihayê abonetiyê şeş mehan ji bo nav Almanya: 30Euro
Ji bo abonetiya derveyî Almanya, pêwendî ligel Rûdawê deynin.

**Hesabê Rûdaw**
Rudaw Media GmbH
**Bank** Deutsche Bank Köln
**Konto Nr** 2450161
**BLZ** 37070024

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
**info@rudaw.eu**



## *Sûriyê û Herêma Kurdistanê*

**Chris Bowers***

Di dema çend heftiyên borî de, cîhanê gelek wêneyên xemgîn û çîrokên tundûtûjiyê û kuştina kesên sivîl li Sûriyê dît. Ew xelkên ku bi awayekî aştiyane xwepêşandanan dikin û raya xwe pêşan didin, ew serkutkirina şerxwaz nayê qebûlkirin û divê di demeke herî zû de bê rawestandin.

Ew berpirsî li ser milê hikûmeta Sûriyê ye ku rêz li mafên navdewletî yên hevwelatiyan bigire û wan biparêze. Divê desthilatdarên Sûriyê rêz li mafê azadiya ra û nerînê ya xelkê xwe bigire. Bi mebesta bêdengkirina xwepêşanderan ji bo wan hewldanên tund ti hincetek tune. Rêvekirin li ber çavdêrên serbixwe weke parêzer, rojnamevan û hemû çalakvanên din ên warên mafên mirovan, da ku karê xwe bikin, pêngaveke girîng e bo rêzgirtina azadiya nerînê. Brîtanya daxwaz ji desthilatdarên Sûriyê dike ku êdî çalakiyên wan berteng neke. Dadmendî ji bo qurbaniyên tundûtûjiyê bi riya lêkolîneke serbixwe û dadperwer, karekî girîng e. Nabe kesên ku mafên mirov binpê dikin bên parastin. Kesên ku ser bi hikûmetê ne, em dibînin ku bi navê wan mafên mirov tên binpêkirin. Herwiha ew ji van tundûtûjî û kuştinan berpirs in û berpirsiya wan mezintir jî dibe eger ji bo bidawîanîna van kiryaran ti helwêsta wan nebe.

Bersiva baş bo xwepêşanderan, reform in, lê ne binpêkirin. Ev tena rê ye bo bicihkirina aramiyeke demdirêj. Bersivdana binpêker a daxwazên xwepêşanderên aştîxwaz zêdetir dike bo guherînê.

Divê desthilatdarên Sûriyê di çarçoveyên mafên mirovan û UN de kar bikin û di demeke herî

**Ji bo xwepêşanderan bersiva herî baş reform in, ne binpêkirin.**

kurt de rê vekin li ber ofîsa bilind a mafên mirovan û komîteya taybet bi karên mafên mirovan a ser bi UN, rê bidin çavdêriya rewşê bikin. Ku ev jî hevdem e Sûriye di civata mafên mirovan a UN de bibe endam, ku bi rastî tiştekî ecêb e!

Çêdibe piraniya aliyên pêşketî ên demokrasiya Kurdistanê bibin mînakeke bo hemû Rojhilata Navîn. Ev jî nayê wê wateya ku her tişt li vir tam û temam e. Loma jî serokê Herêma Kurdistanê û serokê hikûmetê ji bo acendayeke reformxwaz û ragehandin ku pêşwaziyê li ramanên nû dikin, hewldaneke zêde kirin.

Eşkere ye li Kurdistanê di kontrolkirina xwepêşandanan de hinek xeletî hebûn û hinek ji xwepêşanderan jî tundûtûjtir bûn. Hinek rojnamevan hest dikin bi awayekî tund reftar ligel wan hatiye kirin. Di hinek raporên medyayê de tişt hatine mezinkirin. Şewitandina kanala Naliya, karekî xirab bû, lê vêga ku dest bi pexşkirinê kiriye, ev jî tiştekî cihê kêfxweşiyê ye. Divê ders ji van bên girtin.

Demokrasî rê ye, ne ku dewleteke amade û çakkirî. Demokrasî proseyeke pêwîstiya wê bi rafînerkirin, pîvankirin, çavdêrîkirin û şêwirmendiyê heye. Herdem pêwîstiya demokrasiyê bi kar û xebatê heye û qet bidawî nayê. Di 5'ê Gulanê de me li Brîtanyayê derbarê guherînan di sîstema dengdanê de referendumek çêkir. Hê jî piştî nêzîka 800 salan ji hilbijartinan li Brîtanyayê, kar li ser vê sîstemê tê kirin û hinek kes jî di parlamentoya Brîtanyayê de li benda guherînê ne.

Tiştê ku girîng e ew e ku civaka Kurdî û siyasetmedar bi awayekî azad û aştiyane divê diyalog û gotûbêjan li ser meseleyan bikin. Di vî warî de tiştekî din nabihîzim ji aliyê hevwelatiyên Kurd, ji bilî piştgiriyeke xurt. Ev jî xwestina Kurdistanê û serokatiya wê bo aramiyê û tiştek nikare bilerizîne.

Gelo em dikarin heman tiştî li ser Sûriyê bêjin?

**Chris Bowers niha konsulê giştî yê Brîtanya li Hewlêrê ye, her du heftiyan carekê vê stûnê ji Rûdawê re dinivîse.*



## *Di leyîstoka duyemîn de karê opozîsyonê*

**Hêmin Ebdulla**

Piştî bûyera dil tezîn a 17'ê Sibata 2011'ê û rojên piştre rûdan, min li ser rûpelên Rûdawê rexne li beyannameya Tevgera Goran a ku daxwaza hilweşandina parlemento û Hikûmeta Kurdistanê kiribû, girt. Ez wê rojê di wê baweriyê de bûm ew beyanname nîşana dirêjbûna bêhdan û ezmûnek ciwan a opozîsyonkirina li Kurdistanê kêr tîne. Mixabin roj û heftiyên piştre rastiya van gotinan derket holê. Niha hêdî-hêdî pêla acizbûnê kêm dibe û bingeh ji bo diyalogek nîştîmanî xweş dibe. Mafê wan e ku derbarê paşeroja karê opozîsyona li Kurdistanê xwedî helwestek nû bin.

Berî her tiştî em li gel hev rastbêj bin. Ti Kurdek welatparêz nîne li Kurdistanê dilê wî bi hebûna opozîsyonek çalak xweş nebe. Ez bawer nakim ku ti endamek têgihiştî yê partiyên deshilatdar hebe û nizane hebûna opozîsyonê ji bo tendurust û ciwan hêlana sîstema deshilatê, wekî hebûna avê ji bo masiyan girîng e.

Eger wateyek a demokrasiyê hebe ev e: Cûdahiyên navbera civakê dihêlin, lê li kêleka hev rêkdixin. Mana cûdahiyan jî wisa dike ku herdem dûdilî û çavdêrîkirina hev di rêveberiya welat de bimîne. Îro destûra deshilatdariyê didin min û tu jî çavdêriya min dikî. Sibe tu destûrê werdigirî, ez hûrî û mezinahiya pêngavên te dişopînim. Lê eger baweriya me herduyan bi demokrasî û bi wê sîstema yasayî ku em beşdarbûyîn heye, em ê yasayên leyîstinê jî li ber çav bigrîn û derbaz nekîn.

Mixabin di çend mehên borî de opozîsyona me ev yek nekir. Bihaneya wê yekê jî anî ku ji bilî opozîsyonek kêm ezmûn e, warek wisa jê re nehêle heta karê xwe bi rêkûpêkî bike. Di rastiya xwe ew argumena wan a dawî balkêş bû. Ji ber ti kes bi qasî serkirdeyên opozîsyonê şarezayî derbarê şêwaza fikirîna serokê partiyên deshilatdar de nîne. Pêwîst bû wan ji her kesê baştir zanibûna karê opozîsyonê li Kurdistanê rêyek domdirêj e û pêwîstî bi bêhdanek berfireh heye. Kes nizane, ew dizanin ku ew gendelî û bê edaletiya civakî ya li Kurdistanê heye, û di du salan de nayê çareserkirin jî. Ev Bêstune û Ferhadên dilxurt jê re dibêjin heta bikarin kun bikin. Ji bo vê yekê jî pêwîst e Ferhad xwediyê planên domdirêj bin.

Şaşitiyek din a opozîsyona me ew e ku gelek caran ji naverokê dûr dikevin û serê xwe dixin ser kesek diyarkirî. Rojekê pêwîst e Barzanî dest jê berde, rojek din

**Demokrasî cudahiyên navbera civakê dihêle, lê wan li kêleka hev rêdixe.**

butilê avê davêjin Serokê Parlementoya Kurdistanê, rojek din pêwîst e serkirdeyekê YNK'ê ji kar bê avêtin û heta guftûgo bên kirin. Dibe ku li welatek demokrasî li ser asta asayiya xwe ye, ew daxwaz di cihê xwe de be. Lê li welatê me, em hemû jî dizanin kî bi kê ye. Çêdibe ew pêngav (çend rewa jî bin) guhertinên ciddî li pey xwe bînin?

Rexneyên min jî li ser şêwaza Serokatiya Parlementoya Kurdistanê hene û bi baweriya min divê bi xwe de biçin, lê eger ez parlementerê yek ji partiyên opozîsyonê bûma, min qet karek berevajî exlaqê bilind ê Kurdan ne dikir. Ji ber min dizanî dengderên min wê yekê ji min dixwazin ya şaş e, rast bikim û ne berevajiyê wê bikim. Madem ez dixwazim sîstemek xirab ji bo baştir biguherînim, divê ez bi xwe mînaka wê guhertina baş bim.

Opozîsyonê di demên borî de gelek şaşitiyên din ên wekî sinordarkirina zanyariyên derbarê hinek dosye û mijarên cihê guftûgoyan jî kiriye. Min gelek caran guhdar kiriye ku opozîsyon mijarekê bi tevayî red dike, lê min ne dîtiye çi alternatîfa wan heye? Eger tu bi karekê razî nebî, ji min re bêje; ew kar çawa bê kirin, tu wê pê razî bibî? Di zanista siyasetê de tenê red kirin û bêyê diyarkirina alternatîfekê, jê re dibêjin: "Popolîzm." Ango tu tenê ji ber wê yekê tiştekê red dikî, ji ber tu dizanî gelek dengder hene ji ber wê red kirinê, dengê xwe didin te. Siwarî pêla acizbûna xelkê dibî, lê tenê siwar bûyî û ti çareserî li gel te nîne. Mixabin li Kurdistanê hinek caran opozîsyona me ev yek dikir.

Gûman tê de nîne paşeroja ne aramiyên ku li Kurdistanê hene, vegera hemûyan bo salona parlemento û ser maseya guftûgoyan e. Wê demê jî wekî, timî hebûna opozîsyonek çalak, çav û guhê wê vekirî, wê ji pêwîstiyê pêwîstir be.

Eger wê demê ez parlementerê opozîsyonê bûma, min ê ev xalan ji bo welatê xwe û ji bo dûbarenekirina şaşitiyên borî li ber çav girtiban:

Yek: Ez ê bêhn dirêj bûyîbûma û min dizanî Bêstûn bi şev û rojekê kun nabe.

Du: Dema min tiştek red dikir, min ê alternatîfek pratîkî û baştir li gel anîbûya ziman.

Sê: Min kar li ser kîja dosyeyê kiriba, min ê zanyariyên temam derbarê wê de wergirtiba û min zanyariyên bê belge ne dixist ber çavan.

Çar: Min ê kar li ser naverokê kiriban, ne li ser kesan.

Pênc: Min ê rêzdarî li rêsa û yasayên sazî û dezgehên ku di nav de xizmetê dikim, girtibana.

Di demokrasiyên pêşketî de, opozîsyon li pişt çavdêrîkirina deshilatê karek ecêb jî dike. Ew jî encamdana şovek siyasî ye ku hinek caran tijî dîmenên komedî ye û wisa dike ku temaşekirina di nava parlementoyê de ji bo hevwelatiyek sade bi taqet be. Ew şov jî bi ast û rewşek bilind tê kirin û zêdetir leyîstina bi biwêjên di nava guftûgo yan encamdana karek ku asta wê bilind be û mijarek partiyên deshilatdar kirine, bikartê. Pêwîst e bi xwe jî li Kurdistanê leyîstoka duyem a opozîsyonê li cihê dîmenê avêtina bûtil, dîmenên komedî bibînin û hinekê li gel wan pê bikenin!

# Kîstê hêka jinan


Dr. Sacît Guneş*

Hêkê jinan di genîtala aliyê organê jinê de ye. Hormona ostrojen û progesteron ev bixwe yê jinê ne. Hejmarek gelek kêm a bi navê testosteron ku ew jî hormona mêran e ew jî tê de çêdibe. Li herdu aliyê rehîmê jinê tupê fallop bi wan hormonan re têkildar e. Weke gelek nexweşiyan, bi jinan re nexweşiya kistê hêkan jî pir tê xuyakirin. Dema ku kîstê hêka jinan pir mezin bibe ev yek li pêş ducaniya wan dibe kelem.

**Sedema kistê hêka jinan çi ye?**

**Dr. Sacît Guneş:** Dema ku em li nexweşiya hêkê jinan mêzedikin bêguman em dibînin ku hejmarek ne kêm jin bi nexweşiya kîstê hêkan dikevin. Ji sedî 95 sedema kîstê hêkên jinan hatiye destnişankirin ku genetîkî ne. Herwiha ji sedî 5 jî sedem ew aloziya ku di hormonan de dedikeve; mînak wek (Endometrîoma PCO) yê. Ji ber ku keçik hîn di dema zarokatiyê de ew hêk ti nîşanê normal nadin, lê di wextê balixbûnê de û heta dema menopozê gelek şêweyên guhertinê çêdibe. Wekî tê zanîn ji bo jin bi awayekî rêk û pêk her heyv cilê xwe bibîne (periyot) hêk karekî bingehîn dibîne. Hêk ji bo ku jin karibe bibe xwedî zarok jî ji bo tupê fallop wan hucreyan disewihîne. Dema ku hat sewhandin bi rêya cokê dişîne û ew ji bo ducaniye tê amadekirin.




**Di kîjan demê de kîstê hêkê jinan dibin pirsgirek û navê wan çi ne?**

Ji bo hîn baştir kîst bên naskirin, ez ê hinekî qala hucreyan û hêkê jî bikim. Her heyv hucre pêşdikeve; hucreya ku em jê re dibêjin folîkul nava wê tijê av dibe. Di vê navberê de hêk heta 18 mîlîmetre mezin dibe û bi bilindbûna hormonê jî ew zaîf dibe û diteqe, xwe digihîne hucreya hêkê; piştre avek zer çêdibe. Bi dehan navê kîstan hene; ango ew şêweya avê çawa be nav ji wê tê stendin. Mirov dikare bi çend mînakan wiha rêz bike. Wextê di hundirê kîstê de ava seroz hebe jê re kîsta seroz dibêjin; mûsîn hebe mûsînoz kîst dibêjin. Carina jî av tevlîhev be mikst kîst tê gotin. Dema ku kîst ji 5 cm zêdetir be hingê ev dibe astengî. Çareserî bi dermanan çêdibe. Herwiha divê hertim bi rêk û pêk bê kontrolkirin. Eger ku di vê kîstê de pençeşer nebe heta 5 cm em dişopînin. Carina bi derman tê çareserkirin, lê wextê ji 5 cm zêdetir be hîngê divê bê emeliyatkirin.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr. Sacît Guneş jjinekolog e û ji Bakurê Kurdistanê ye. Ew niha li Stenbolê dijî.*

## Xaçepirs

**Çeperast:** Serokê El Kaîdeyê – Zewac, hevjînî. 2- Erd, bingeh – Her cîh, der û dor – Vexwarinek. 3- Strana yekdengî (berepaş) – Reh, ra, kok – Cejnek Elewîyan, şîrnahîyek. 4- Heywan, teba – Pêlav, sol (berepaş) – Mal, tişt (berepaş). 5- Fermandar – Fîrma, şîrket, dem. 6- Hesinê tenik – Xwedayekî Sumeran. 7- Destnîşana kesê duyem (berepaş) – Ciwamêr, çavfireh, destvekirî – Pirç, por, tayê por. 8- Canî, kujer, qatil. 9- Heywanek, misilman naxwin – Kesê li ûdê dixe. 10- Teqemenîyek, bombeyek (berepaş) – Na, no (berepaş).

**Serejêr:** 1-Eraqa Yewnanî/Grêkîyan – Bi Farisî “agir”. 2- Saxlemî, oxir, bext – Darek, jina bê mêr. 3- Jina apê, jina mamê mirov – Rûbar, ava xurt û geş. 4- Pêşewazîya fermî (berepaş) – Damar, kok. 5- Yan, yan jî – Hacetek muzîkê. 6- Terikî, qelişî, nîv şikestî. 7- Pêşbirka bazirganî, kê zêdetir da – Doktor. 8- Nexasim, xasma – Dûman, dixan. 9- (....Marx) aborîzan û komînîstê Alman (berepaş) – Hazir, tedarikkirî, li ser pê. 10- Ji dest çû, filitand (berepaş) – Di tib ê de “mîz”. 11- Haydê, yalla, bes e, rabe. 12- Rêxistinek Îrlandayê. 13- Dilxweş, kêfxweş. 14- Rût, tazî, lotik. 15- Zarok û heywanên li ber şîr, piçûk. 16- Bexçê bihuştê.




## Pîrozbahiya 30’mîn salvegera FKKS’ê




Federasyona Komeleyên Kurdistanê li Swêdê (FKKS) di **14’ê Gulana 2011’ê de 30-saliya** xwe pîroz dike

Komîteya Giştî ya FKKS hemû endamên komîteya karger û giştî yên berê ku di nav van 30 salan de li organên FKKS kar kirine, dawetî pîrozbahiya 30’min dike. Ji ber ku navnîşana hemû endamên komîteya karger û komîteya giştî ya berê li cem me nîne, me xwest bi rêya vê annonsê endamên berê yê organên FKKS dawet bikin.

**Ji bo têkilî:** info@fkks.se
**Tel:** 08 – 27 72 55

## Dokûmentasyon li ser Ahmet Kaya li Wuppertalê

**Derhêner:** Hayri Argav
**Dem:** 12.05.2011
**Saet:** 19.00
**Cîh:** Cafê Hayat, Schreinerstr. 26
Wuppertal/Almanya

## 1. Rojên fîlmên kurdî li Karlsruhe (Almanya)

**Dem:** 13-15.05.2011
**Cîh:** Kinemathek Studio 3
Kaiserpassage 6
76133 Karlsruhe




## Semînerek li ser Selahaddînê Eyyûbî

**Dem:** 14’ê Gulanê 2011
**Saet:** 13:00–15:00
**Cîh:** Kitêbxaneya Kurdî, Gustavslundsvägen 170, ALVIK (Medborgarhus), Stockholm (Swêd)
Amadekirin: Komeleya Nivîskarên Kurd li Swêdê; nivîskar û wergêr M. Emîn Narozî




## Peyamên xwe ji Rûdawê re bişîn

Xwendevanên hêja,
êdî hûn dikarin peyam û îlanên xwe ji me re bişînin, ew ê belaş li vir werin weşandin. Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me **(info@rudaw.eu)** ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir biweşînin.

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

## Harman Nîhad Alî Gawhar



Navê min Harman e. Ez xelkê Diyana li Başûrê Kurdistanê me, lê li Almanya, li bajarê Munchen hatime dinê. Niha ez 9 salî me û li pola 2 dixwînim. Almanî û kurdî baş dizanim. Ji bo ku ez bikarim hevkariya mirovan bikim, dema ez mezin bûm, dixwazim bibim doktor. Herwiha ez gelekî hezdikim ku bi kaxezan karê detan çêbikim. Li malê jî dixwazim gelekî hevkariya bavê xwe û birayên xwe bikim.

## Çend demjimêran razan normal e?

Zarokekî nû ji dayîk bûyî di rewşek normal de divê kêm zêde 18 demjimêran razê. Ger ku zarok ji vê zêdetir razê û bi hêsanî şiyar nabe, divê serî li pizîşk bê dayîn.

Ji bo zarokekî 6 mehî ji derveyî xewa şevê bi roj 2 car, her carê 2-2.5 demjimêr, di nava rojê de xewkirin normal e. Dema zarok bibe 12 mehî, xewa rojê dikare dakeve carekê. Ji bo zarokan xewa berbi êvaran nebe baştir e, ji ber ku ev xewa şevê xerab dike. Derveyî vê jî:



- ✓ Zarokek 2-5 salî herî kêm divê rojane 13 demjimêran razê.
- ✓ Zarokên 5-9 salî herî hindik divê rojane 11 demjimêran razin.
- ✓ Zarokê 9-10 salî jî rojane pêwîstî bi herî kêm 10 demjimêran razan heye.




## METELOK



Tu dikarî tenê 4 ji van 35 darikên kurfîtê wiha biguherînî, ku 3 çargoşeyên ji hev cuda derbikevin?

## FÊRÎ KURDÎ BIBE

L l ل

Lêv لێو



Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk